BasNûçe
HERDEM RASTÎ
ISSN 2148-5305
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 85 11 - 17 Çile 2016 basnews.com



Abdulrezzak Îlge
## Nîgarsazê Tevkujiya Şengalê
R16



Barzanî:
# Em ê nebin beşeke şerê mezhebî



Di demeke ku li Rojhilata Navîn rikberiya şîa û sunne ku bi serkêşiya Îran û Siûdî dike aloztir dibe de, RHK'ê di nav vê hengameyê de hem li hundur û hem jî li derve helw dide ku zemîna serxwebûnê pihêttir bike. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî destnîşan kir ku ew ê li heremê nebin beşeke ji vî şer û nakokiyên mezhebî.

Li aliyê din Barzanî bi hemû nûnerên dîplomatîk ên li Hewlêrê re civiya û peyama pêgiriya referandûma serxwebûnê da wan. Di vê çarçoveyê de ji bo çareserkirina qeyrana siyasî jî ji aliyekî ve hewlên diyalogê yên navbera PDK û YNK û Goran didomin, ji aliyê din ve ji dinyayê re peyama 'Ji Kurdistana serbixwe re amade bin' tê dayîn.

R02-3



Nivîskar Arif Qurbanî:
## Wê aliyên siyasî di rapirsîya serxwebûnê de yekdeng bin
R08-9

## Kurd ji artêşa Iraqê vediqetin

Ji ber ku artêşa Iraqê ket bin bandora Îranê û bû hêzeke mezhebî serbazên kurd ji artêşê veqetiyan û beşdarî Pêşmerge bûn.



R04

Sûr, Silopî û Cizîrê:
## Şer hemû jiyanê kavil dike
R12

Partiyên Bakurî
## Ji bo aştiyê serdana Hewlêr û Qendîlê
R14

## Rojnamegerên mûxalîf di bin zextan de ne
R15

# "Kurd nabin beşek şerê mezhebî"

Mustafa Turan

Di demeke ku li Rojhilata Navîn rikberiya şîa û sunne ku bi serkêşiya Îran û Siûdî dimeşe ber bi pêvajoyeke aloz ve diçe, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, ragihand ku ew ê nebin beşeke şer û nakokiyên mezhebî yên heremê.

Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) ku bi biryara referandûma serxwebûnê sala nû pêşwazî kir, ji aliyekî ve hewl dide ku barê civakî û aborî yê şerê DAIŞ'ê hilgire, ji aliyê din ve hewl dide ku kriza polîtîk ya ku Tevgera Goran bû sedem çareser bike. Serkirdayetiya RHK'ê ku ji bo çareseriya pirsgirêkên aborî dest bi hewldanan kirî ye, ji aliyê din ve jî bi rêbazên dîplomatîk hewl dide ku hêzên navneteweyî ji bo serxwebûna Kurdistanê amade bike.

Di vê çarçoveyê de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî serbalyoz û nûnerên 36 welatan li Ofîsa Serokatiyê kom kir, ji wan re diyar kir ku rewşa niha derfetdar e ku rêxistinen ji DAIŞ'ê dijwartir biafirin û peyama 'Ji serxwebûna Kurdistanê re amade bin' da wan. Her wiha xuya dibe ku hewlên PDK'ê yên diyaloga bi Goran û YNK'ê re jî ji bo mala kurd yekdeng bikin têne kirin.





**Barzanî: Em di referandêmê de pêgir in**

Bi dagirtina Mûsilê re, piştî ku envantera çekên giran ên Artêşa Iraqê ketin destê DAIŞ'ê û bi van çekan êrîşî Kurdistanê kir, Pêşmerge, sersengiyeke demkî derbas kiribe jî, bi saya kêmek çekên alîkariyê û bi giyaneke welatparêzî tafilê li xwe hat û di demeke kurt de serkeftinên mezin ên ku hemû dinyayê matmayî hişt bi dest xist. Ev yek îtibara RHK'ê ya di asta dinyayê de bilind kir û Hewlêr kir navendeke herî grîng a dîplomasiya dinyayê. RHK'ê û Serokê wê Mesûd Barzanî, bi serkeftinên leşkerî yên ku di 2015'an de bi rizgarkirina Şengalê gihîşte asteke bala û rêbazên serkeftî yên dîplomatîk ku îtibara kurdan di raya navneteweyî de bilind kirin, niha jî hewl didin ku van serkeftinan veguherînin piştgiriya navneteweyî ya ji bo serxwebûna ku wê piştî referandûma ku di lêkolînan de nêzîkî ji sedî 80 bi dengê erê encam didin bê ragihandin.

**"Rizgarkirina Mûsilê divê nebe cihê hin xetereyên nû"**

Barzanî di derbarê şerê li dijî DAIŞ'ê rewşa penaberan û qeyrana darayî jî axivî. Barzanî ji nûner û konsolgerên welatan re tekez kir ku DAIŞ weke rêxistineke terorê dijminê hemû cihanê ye û nabe dewlet rikberiya li gel hev û şerê li dijî DAIŞ'ê têkelî hevdû bikin. Her wiha Barzanî amaje bi wê yekê kir ku divê cihan hewl bide ku xetereya DAIŞ'ê ji holê rabe û wiha got: "Gel bedelên mezin didin û hewl didin ku ev qonax bi dawî bibe. Qonaxa rizgarbûna Mûsilê ya ji DAIŞ'ê jî gelekî giring e û divê nebe cihê hin xetereyên nû. Ji bo ku careke din tişên wisa pêk neyên, divê hemû rêgirî bên bikaranîn."

Li hêla din Barzanî bal kişand ser kêşeyên Hewlêr û Bexdayê jî û daxuyand ku ew ê RHK bi hikûmera Iraqê ya heyî re di nava diyalogê de be û bi israr vê yekê bidomîne. Barzanî, li hêla din da zanîn ku ji bo pêkvejiyanê pêdawîstî bi rêkeftineke nû heye û wiha berdewam kir: "Divê êdî neyê hiştin ku karesat û neheqî dubare bibin."

**"Rageşiya mezhebî ew ê ji DAIŞ'ê mezintir be"**

Rageşiya bi şerê navxweyî yên Sûriyê dest pê kir û di demê re tûşî hevpeymaniya Şîe ya Îran,Iraq Sûriyê û Erebîstana Siûdî, Misira Sunne bû ber bi qonaxeke din diçe. Koalisyona ereban a bi Erebîstana Siûdî serperiştiya wê dike li paytextê Yemenê li Sanayê konsolgeriya Îranê bordûman kir, Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, di kombûna li gel 36 nûner û konsolgerên li Hewlerê de eşkere kir ku rageşî û nakokiya mezheebî ew ê xeterên ji DAIŞ'ê mezintir bi ser herêmê de bîne û ji bo ku ew rêgiriya vê yekê bikin divê ew bi xwe çarenûsa xwe diyar bikin. Mesûd Barzanî, her wiha da zanîn ku arişeyên mezhebî li Kurdistanê tünene û ew rêgiriyê li ber wê yekê dikin û ew ê nebin parçeyekî şerê mezhebî. Barzanî her wiha berdewam kir: "Ji bo ku di navbera gelan de aşîtî berdewam bike divê ji van pevçûnan û hestên tolhildanê dûr bê sekinin. Eger li ser pevçûnên mezhebî israr hebe DAIŞ here jî ew ê ya ji DAIŞ'ê xirabtir derkeve holê."

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, îddîayên ku ew ê RHK nêzîkî bereya Sunne be derewand û ragihand ku eşkere kir ku danûsendinên li gel welatên erebî ne ji bo layengiriya alîyekî ye. Her wiha Berpirsê Peywendiyên Derve Felah Mistefa jî da zanîn ku ew ê nebin parçeyekî şerê mezhebî. Mistefa ragihand ku ew ê nebin parçeyekî rageşiya Riyad û Tehranê û beriya ku ew alozî mezin bibe divê Neteweyên Yekgirtî mûdahele bike.

Li hêla din Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî li gel balyozgera Îtalya ya Hewlêrê Elesandra Di Pipo civiya. Barzanî di civîna li gel Elesandra Di Pipo de eşkere kir ku gelê Kurdistanê piştevaniya Îtalya yç ji bîr nake û di karê wê yê nû de jî ji Di Pipoyê re serkeftin xwest. Her wiha Di Pipo jî amaje bi wê yekê kir ku nasîna Barzanî ji bo wê cihê şanaziyê ye û Hiikûmeta Îtalyayê ked û rû bi rûbûna şerê gelê Kurdistanê dibîne û ew ê di alîkariyê de berdewam bin û RHK'ê ji bo Îtalyayê gelekî giring e û di navbera herdu welatan de peywendiyên dostane hene Di Pipoyê tekez jî kir ku ew ê jî ji bo xurtkirina peywendiyên kar bike.

**Danûstendinên li hevkirinê destpêkirin**

Qeyrana siyasî ya YNK'ê pêşengiya wê dikir û di derbarê Serokatiyê Herêmê de ber bi kûdetaya parlamentoyê ve çû gelekî alozî pêk anîn. Xwepêşandanên bi hinceta nedayîna mûçeya mamoste û karmendên bi serperiştiya layangirên Tevgera Goranê bi rêve çûn li Kurdistanê belav bûn. Herî dawî ji ber wê qeyranê Goran ji parlamentoyê hat derxistin. Hat zanîn ku amadekariyên rapirsina serbixwebûnê tesîrek li ser hewa siyasî ya herêmê kiriye. Li hêla din jî amaje li ser wê yekê heye k udi nava Goranê de aloziyan rû daye. Beriya niha bi çend rojan Endamê Meclîsa Netewî yê Tevgera Gotan Şemal Abdulwefe û çend endamên wê partiyê îstîfa kiribûn. Li gel wê yekê îstîfaya Berpirsê Ofîsa Xaneqînê ya Goranê Umran Abdulah Ferec û Berpirsê Peywendiyên ê Ofîsa Xaneqînê Erqan Rehim Kerimû 17 endamên partiyê jî îstîfa kirine û ofîsa Xaneqînê radestî poîlsan hatiye kirin.

Di derbarê mijarê de Ferec ji BasNûçe'yê re axivî û eşkere kir ku di nav Tevgera Goran de kêşeyên mezin hene û alî ji bo ku hevdû têk bibin ketina nava hewldanan û ji ber wê yekê wî nerazîbûna xwe nîşan daye û îstîfa kiriye.

Her çend nakokiyên heyî rû da bin jî li gor agahiyên tên wergirtin eşkere dikin ku ew ê danûstendin di navbera Tevgara Goran û PDK'ê de dest pê bikin. Her wiha tê zanîn ku ew ê Endamê Mekteba Siyasî ya PDK'ê Fazil Mîranî bi serkirdeyê Goranê Omer Seyid Elî re bicive. Tê zanîn ku ew ê PDK tu şertan qebûl neke. Di derbarê danûstendin û diyaloga PDK-Goranê de Endamê Peywendiyên Netewî Ehmed Kanî, da zanîn ku ji bo diyalog di navbera aliyan de dest pê bikin PDK ne neçare bi serkirdeyê Goranê re rûne û di nava Goranê de kesayetiyên hêja hene. Her wiha Endamê Tevgara Goranê Şîrîn Riza jî amaje bi wê yekê kir ku Goran ji bo çareseriya qeyrana navxweyî amadeye bi aliyên siyasî re rûne.

**Li hev hatina PDK û YNK'ê**

Di navbera PDK û YNK'ê de di rojên dawî de trafîka hevdîtinan heye. Ev hevdîtin di rojeva Herêma Kurdistanê de ne û tê pêşbînîkirin ku ev hevdîtin wê bi damezrandineke hikûmeteke nû encam bibin. Tê ragihandin ku li gorî Tevgera Goranê têkiliyên di navbera YNK û PDK'ê di asteke baş de ne û herdû alî nêzikî rêkeftinekê ne. Hevdîtinên, ji bo ku parlamento çalaktir bibe û di nava parlamentoyê de bi hevpariya PDK û YNK pirsgirêk bên çareser kirin û hikûmeteke nû were damezrandin dewam dikin û zanyariyên zelaltir tên. Tê ragihandin ku PDK'ê û YNK'ê li ser vê formulê di dawiya 2015'an de hin hevdîtin kirine û her dû partî jî li hev hatine û tenê hin hûrgilî mane. Tê gotin wê paşê jî ji raya giştî re were aşkera kirin. Ev formûleya ku Partiya Civaka Îslamî (Komel) jî piştgiriyê dide, hikûmet bi hevpariya PDK-YNK'ê bê damezrandin jî wê hin wezîrtî ji partiyên derveyî hikûmetê jî re bên dayîn. Tê ragihandin ku YNK bi rijd e ku serokatiya parlamentoyê bistîne û ji bo ku Tevgera Goran jî tevlî vê pêvajoyê bibe hin wezîrtî ji Tevgera Goranê re jî werin dayîn.

**Ata Selawî (YNK): Divê qeyran bên çareserkirin û paşê referandûm were kirin**

Endamê polîtbûroya YNK'ê Ata Selawi, di derbarê mijarê de ji BasNûçe'yê re axivî û balkişand ser dijwariya çareseriya qeyranê ya bi vî awayî. Selawî diyar kir ku divê parlamento kom bibe û çalaktir bibe. Selawî axaftina xwe wiha domand: "Dema ku parlamento çalaktir bû, pirsgirêkên weke serokatî, şer, rewşa aboriyê û pirsgirêkên li pêşiya Rêveberiya Herêma Kurdistanê ku pêşveçûna RHK'ê asteng dikin, hatin çareser kirin, em ê pêşeroja xwe bibînin. Di nava van pirsgirêkan de nikarin biçin referandûmê. Heke referandûm pêk were jî anîna gel a ji bo ser sindoqan wê dijwar bibe." Selawî diyar kir ku angaştin ku tê gotin PDK-YNK wê hikûmeteke hevbeş ava bikin jî ne rast in û YNK aligirê hikûmeta parlamentoyê ye û nakeve di nava hewlên wiha de. Selawî, îddîa kir ku sedema pirsgirêkan a sereke serokatiya Mesûd Barzanî ye ku digel parlamentoyê jî dewam dike. Selawî got ku Barzanî di qada navneteweyî de xwedî rolekî girîng e û ev ji bo kurdan kêrhatiye lê ev nayê wê wateyê ku Barzanî heta hetayî serok be. Selawî di berdewamiya axaftina xwe de destnîşan kir ku Barzanî dikare ku weke serokê partiyekê roleke erênî bilîze. Selawî wiha axivî: "Yasayên heyî li hember mana serokatiya Barzanî astengin û pêwîstiya RHK bi serokekî nû heye. Dibe ku serokê nû ji PDK an jî ji partiyeke din be. Lê divê di nava pergala parlamamenteriyê de bê hilbijartin."

**Ferhan Cewher (PDK): Serokatiya Barzanî rewa ye**

Piştî ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî referandûma serxwebûnê hanî rojevê, tê gotin ku bi mebesta hevdîtinên ji bo hemahengiya li ser vê babetê ya navbera partiyan jî destpê kirine, lê belê ne bi şêweyê ku di çapemeniyê de tê kalkirin û heta niha tu biryareke hevbeş nehatiye stendin. Parlamenterê PDK'ê Ferhan Cewher pirsên BasNûçe'yê bersivand û da zanîn ku berê jî wan ragihandiye ku ew ê şertên Goran ên ji bo destpêkirina hevdîtinan qebûl nekin û ger ku li gel vê yekê jî di şertên xwe de pêgir bin, ew ê wisa têbigihîjin ku Goran dixwaze rêyên diyalogê bigire. Cewher diyar kir ku Goran bi ser navê normalîzekirina parlamanê dixwaze Serokparlamanê Berê û wezîrên Goranî yên ku ji erka xwe hatibûn dûrxistin dîsa vegerin ser erka xwe û got: "Lê belê em dibejin ji bo çareseriyeke giştî bila hem parlamen û hem jî hikûmet ji bo kabîneyeke nû dest bi hewldanan bike. Çimku vegera erkê xwe ya serokparlaman û wezîran çareseriyeke giştî peyda nake, lê belê bi damezirandina kabîneyeke nû kesên ji Goran jî dikarin di vê kabîneyê de cih bigirin"

Cewher li ser nirxandinên lêpirsîna rewatiya Serokatiya Barzanî jî rawestiya û anî ziman ku Mesûd Barzanî li ser biryara Encûmena Şûraya Bala ya Kurdistanê postê serokatiyê berdewam dike, ev şûra payedar e ku di mercên şer û qeyranên mezin de di derbarê rêveberî û dadwerî de biryarên girîng bide, ji ber vê yekê jî tu aliyekî lêpirsînkirina serokatiya Barzanî tune ye û serokatiya wî rewa ye.

Cewher, li gel ku hevdîtinên PDK û YNK'ê piştrast kir jî diyar kir ku ev hevdîtin negihîştine asteke wisa ku biryareke hevbeş a damezirandina koalîsyona PDK û YNK'ê. Cewher wiha dom kir: "Jixwe pêdivî bi hikûmeteke nû jî tune ye. Lê belê, pêkan e ku kabîneyeke nû ku dîsa hemû partî tê de cih digirin bê damezirandin. Dikare hin wezîr, rawêjkar û berpirsên hikumetê bêne guhertin. Ev babet jî wê piştî hevdîtinên bi partiyan re û encamên van hevdîtinan re diyar bibin"

Li hêla din Cewher bal kişand daxuyaniya Serokê DYA'yê Obama ya ji bo vekişlîna leşkerên Tirkiyê ya ji Beşika jî û da zanîn ku muhatabê vê qeyranê ne RHK ye. Her wiha Cewher amaje bi wê yekê jî kir ku leşkerên Tirkiyê bi daxwaza waliyê berê yê Mûsilê Asil Nuceyfî hatine herêmê. Cewher ragihand ku RHK di şerê li dijî DAIŞ'ê de piştgiriya hemû hêzên tên herêmê dike û ji alîkariya wan kêfxweş dibe.

**Ji bo qeyrana aborî tedbîrên reformê**

Li Herêma Kurdistanê, di heman demê de lêgerinên ji bo qeyrana aborî ya ku ji ber şer, koça penaberan, kêmbûna bûhayê neftê û ji alî Bexdayê ve neşandina ji sedî 17 para budceya herêmê rû dabû jî didomin. Jêderên siyasî yên herêmê radigihînin ku Serokwezîrê Herema Kurdistanê Nêçîrvan Barzanî di demeke nêz de wê ji bo qeyrana aborî rêze reformên girîng bide destpêkirin. Parlametê PDK'ê Ferset Sofî di daxuyaniya xwe ya di derbarê vê babetê de da zanîn ku biryarên reformê yên ku hikûmetê di 21'ê Kanûnê de ragihandiibûn destpêka rêzereforman bûne û di demeke nêzîk de wê Serokwezîn Nêçîrvan Barzanî reformên nû yên bingehîn têxe meriyetê.

Ji alî din ve, her çend dahata wê ya aboriya Herêma Kurdistanê hindik be jî Deriyê Îbrahîm Xelîl ji bo rojane 7 seetan hate vekirin. Weke tê zanîn Deriyê Îbrahîm Xelîl, ji ber ku li Silopî û Cizîrê şer û pevçûn gûr bûbûn, ji alî Tirkiyeyê ve di 14'ê Kanûna 2015'an de hatibû girtin û vê yekê ziyaneke aborî dabû navçeyên nêzîk sînor. Qeymeqamê Zaxoye Xelîl Mehmûd jî ragihand ku derî di navbera seet 08:00 û 15:00'an de û tenê ji bo kamyonên bazirganî re hatiye vekirin, lê belê Tirkiyeyê heta niha ji bo çûnûhata otomobêl û basan destûr nedaye.



# Kurd ji artêşa Iraqê vediqetin



Kalê Badî

Piştî destpêka şerê DAIŞ'ê ji ber ku Artêşa Iraqê bêtir ket bin bandora Îranê û bû artêşeke mezhebî serbazên kurd jî yek bi yek ji artêşê veqetiyan û beşdarî Hêzên Pêşmerge bûn. Ev rewş her çend ji bo Hêzên Pêşmerge sûdeke bêhempa derxistibe holê jî nebûna kurdan a di nav Artêşa Irakê de bi xwe re valahiyeke din peyda dike. Li gor destûra Irakê şert e ku wek para budceya Herêma Kurdistanê ji sedî 17'ê Artêşa Iraqê ji kurdan pêk bê. Lê belê tê gotin ku niha ev rêjî ji sedî 2 jî nîne.

Li Iraqê di 2003'yan de piştî rûxandina rejîma Baasê Artêşa Iraqê belav bû. DYA û hevpeymanên wê ji bo jinûve avakirina artêşê budceyeke ku ji 25 milyar dolarî pêk dihat terxan kirin. Piştî vê pêvajoyê, di nav demê de Artêşa Iraqê bû xwedî 400 tangên Rûs û Amerîkî, 2500 maşînên zirxî, 278 frokeyên şer, yên bê mirov û yên naqliyeyê û 129 helîkoptêran. Di vê çarçoveyê de dihate xwestin ku artêşeke ku ji 250 hezar leşkerî pêk tê bê damezirandin, lê ev hejmar tu carî negihîşt vê radeyê. Bi damezirandina pergala federaliyê re, li gor destûra Iraqê ya nû pêwist bû hemû gel û pêkhate, li gor gelheya xwe di nav artêşê de cih bigirin. Di vê çarçoveyê de wek rêjeya para budceya Herema Kurdistanê pêwîst bû ku Artêşa Iraqê ji sedî 17 ji kurdan pêk bihata. Lê belê ji ber pêkanînên şiaperest ên Serokwezîrê Berê Nûrî Malîkî rêjeya kurdan tu carî negihîşt ji sedî 17'an. Bi destpêkirina şerê DAIŞ'ê re ji ber ku Artêşa Iraqê bêtir ket bin bandora Îranê û ji alî Îranê ve rêxistina şîa Heşdî Şabî hate damezirandin û milîşeyên vê rêxistinê jî wek endamên artêşê ji alî Hikûmeta Bexdayê ve hatin fînansekirin bandora Îranê hin zêdetir bû. Piştî vê pêvajoyê, her çend Malîkî ji kar hate dûrxistin jî siyaseta Haydar Îbadî jî di bin siya heman feraseta şiaperest de berdewam bû. Ji ber vê rewşê serbaz, sûpay, fermandar û leşkerên kurd ên ku di Artêşa Iraqê de erkdar bûn roj bi roj ji artêşê veqetiyan.

### Serfermandarî ji kurdan hate stendin

Her çend ev veqetandin ji bo Hêzên Pêşmerge sûdeke bêhempa peyda kiribe jî valahiya kurdan a nav Artêşa Iraqê bi xwe re kêmasiyan jî hanî. Tê gotin ku niha rêjeya kurdan a di nav artêşê de ji sedî 2 jî nîne û egerî heye ku Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê(RHK) Mesûd Barzanî bang li ew serbazên ku hê jî di nav artêşê de ne bike da ku vegerin nav Hêzên Pêşmerge. Herî dawî sala çûyî Serfermandarê Artêşa Iraqê Sergeneral Babekir Zebarî, bi daxwaza Serokê RHK'ê Barzani vegeriya Kurdistanê. Piştî vegera Babekir Zebarî, li gor peymana ku di nav Rêveberiya Iraqê û RHK'ê de hatibû îmzekirin pêwîst bû ku Fermandarê Giştî yê Hêzên Asmanî General Enwer Mihemed Emîn ê kurd postê serfermandariyê werbigirta, lê belê di dewsa General Mihemed Emîn de Osman el Ganemî yê şîa bû serfermandar û ev ji alî RHK'ê ve bû cihê nerazîbûnê. Lewre li gor vê Peymanê diviya bû ku di dewsa Sergeneral Babekir Zebarî de kurdekî din bibûya Serfermandarê Giştî û Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî li gor vê peymanê navê General Enwer Mihemed Emîn dabû Bexdayê. Serokwezîrê Iraqê Haydar Ebadî di 12'ê Mijdara 2014'an de ji ber têkçûna artêşê ya li hember DAIŞ'ê 26 payebilindên artêşê ji kar dûrxistibûn, 10'an jî teqawid kiribû û di dewsa wan de 18 fermandarên nû tayîn kiribû. Piştî vê guherînê Serfermandariya Giştî ya Artêşa Iraqê ji dest kurdan çûbû.

### Kurdên fîrar dikirin hatin kuştin

Piştî ku DAIŞ'ê Mûsilê bi dest xist û êrîşî Kurdistanê kir, nêzîkî 2 hezar leşkerên kurd ên profesyonel yên ku di Artêşa Iraqê de cih digirtin ji artêşê fîrar kirin û bêtirê wan beşdarî Hêzên Pêşmerge yên eniyên Kerkûk û Mûsilê bûn. Fîrarkirina van leşkerên ku di nav wan de gellek sûpay, serbaz û general jî hebûn ji alî Bexdayê ve wek helwesteke dijminane hatin dîtin. Gellek ji wan leşkerên ku ji artêşê fîrar kirin bi mebesta dana mûçe bang li wan hate kirin ku bêne Bexdayê. Lê belê piraniya yên ku çûne Bexdayê ji alî milîşeyên rêxistina şîa Esabul Hek ve li Bexdayê hatin kuştin. Tê gotinku RHK ji bo van leşkerên ku ji artêşê veqetiyane plansaziyeke yekîneyên ku ji 10 hezar kesan pêk tê çêkirî ye. Ji ber van geşedanên leşkerî û aloziya neşandina budceya RHK pêwendiyên navbera Bexda û Hewlêrê jî têk çûn.

### "Çîroka 'Iraq xaka hemû ıraqiyan e' derew derket"

Fermandarê Pêşmerge Ahmed Gerdî, di nirxandina xwe ya vê babetê ya ji bo BasNûçeyê de anî ziman ku piştî rûxana rejîma Baasê, kurd bi xweşhalî başdarê Artêşa Iraqê dibûn û bêyî astengî dikaribûn di nav artêşê de bibin payedarên bilind. Gerdî diyar kir ku di destpêkê de tu ferq û meyldariyek nijadî an jî mezhebî tunebûye û ji ber vê yekê gellek kurd bi baweriya xizmetkirina xaka Irakê beşdarî artêşê bûne. Gerdî dom kir: "Lê mixabin piştî demekê rewş guherî û ew çîroka ku Irak xaka hemû Iraqiyan e derew derket û artêş bû artêşeke ereb û şîa. Ji ber vê yekê di serî de kurd, kesên ji pêkhateyên din hêdî hêdî ji nav artêşê vekişiyan"

Gerdî di berdewamiya axaftina xwe de da zanîn ku Bêtirê sûpay û serbazên kurd ên ku ji Artêşa Iraqê veqetiyane beşdarî Hêzên Pêşmerge bûne, nêzîkî dû lîwayên devera Kerkûkê li heman deverê derbasî nav Hêzên Pêşmerge bûne. Gerdî da zanîn ku ev kesên ku ji artêşê veqetiyane û başdarî Pêşmerge bûne ni li ser biryareke siyasî ya kurdan an jî RHK'ê, ji ber rengguhertina wê ji nav Artêşa Iraqê veqetiyane. Gerdî da zanîn ku hejmara kurdan a di payeyên bilind ên Artêşa Iraqê de zêde nebe jî kurd bi xebat û çalakiyên xwe yên serkeftî ji yên din cudatir û serkeftîtir bûne û ji ber vê yekê roleke wan a berbiçav di nav Artêşa Iraqê de hebûye.



### "Hêzên Pêşmerge bi saya wan xurtir bû"

Fermandarê Hêzên Pêşmerge Ahmed Gerdî ku fermandariya yekem yekîneyên Pêşmerge yên ku di şerê Kobanê de derbasî Kobanê bûn anî ziman ku piraniya kurdên ku ji artêşê veqetiyan bi ser daxwaza Wezareta Pêşmerge veqetiyane û hatine beşdarî Pêşmerge bûne û bi saya wan sûpay, serbaz û leşkerên kurd Hezên Pêşmerge ji berê xurttir bûne. Gerdî wiha dom kir: "Bêtirê kurdên ku ji artêşê veqetiyan û beşdarî Pêşmerge bûn xwedî karîn û tecrûbeyeke baş bûn. Sedemeke serkeftinên Pêşmerge yên eniyên Kerkûk û Musilê jî ew leşker û serbazên kurd ên ku beşdarî Hêzên Pêşmerge bûn"

### "Hejmara Pêşmerge ji 200 hezar zêdetir e"

Ahmed Gerdî di derbarê hejmara Pêşmerge de jî anî ziman ku ew nikare hejmareke rasteqîn bide û pêwîst jî nake û got: "Lê belê ez dikarim bêjim ku ji 200 hezaran zedetir Pêşmerge hene" Gerdî diyar kir ku piştî destpêkirina şerê DAIŞ'ê, bi hatina leşkerên kurd ên nav Artêşa Iraqê, kesên xwebexş, Pêşmergeyên PAK'ê yên Rojhelatî û damezirandina yekîneyên Pêşmergeyên Rojava, Hêzên Pêşmerge hem di warê hejmarê de û hem jî di warê profesyoneliyê de pir xurtir bûye û bi saya van geşedanan li dij DAIŞ'ê serkeftinên mezin bi dest xistiye. Gerdî anî ziman ku Hêzên Pêşmerge êdî tenê artêşeke ku ji kurdên Başûrî pêk tê nîne, di nav Pêşmerge de kurdên Rojava, Rojhelatî û Bakurî hene û got: "Di nav Hêzên Pêşmerge de her wiha kesên Amerîkî, Almanî û yên ji neteweyên cûr bi cûr jî hene. Ji ber vê yekê em dikarin bêjin ku Hêzên Pêşmerge artêşeke Kurdistanî û heta artêşeke mirovahiyê ye"




Pêşveçûna Hêzên Sûriya Demokratîk ku bi serpereştiya YPG'ê li hember DAIŞ'ê dîsa dest bi operasyonan kiriye pêşve diçe. Hêzên ku Bendava Tişrînê û derdora wê kontrol kirin, gelek derbên giran li DAIŞ'ê xistin û hemû êrîşên endamên DAIŞ'ê vala derxistin. Çavkaniyên li herêmê radigînin ku hêzên kurd ber bi Minbîcê ve pêşve diçin.



## Rojava:

# Ji Cerablûsê re 10 km ma!

**Mehmet Salih Batırhan**

Welatên ku 14'ê Mijdarê li Wiyanayê kom bûbûn û li ser rewşa Sûriyê ji bo serdemeke derbazkirinê li hev hatibûn tê mereq kirin ku dê 2016'an çibikin. Aliyên ku beriya demekê li Cenevre I-II û niha jî xwe ji bo Cenevre III amade dikin, ji niha ve tê niqaşkirin ka wê li Sûriyeyê polîtîkayeke çawa bimeşînin. Li gor belgeya ku Ajansa Nûçeyan a Associated Press bidestxistî; Rayedarên DYA'yê pêşbînî dikin ku Beşar Esad heta Adara 2017'an ji li ser erka xwe be. Li hêla din piştgiriya Rûsyayê ya li şervanên Hîzbullahê û Artêşa Sûriyê jî re berdewam dike û Rûsya ji Şamê re bûye weke mertal. Alîkariya Rûsyayê ji Cotmeha 2015'an û vir ve didome.

Xwepêşandanên ku 2011'an li hemberî Beşar Esad û Rêveberiya Şamê derketin nekarîn nozîsyona Beşar Esad bigûherînin, û di şerê navxweyî de jî bîlanço her diçe girantir dibe. Li gor raporên rêxistinên mafên mirovan di sala 2015'an de zêdetir ji 55 hezaran mirovan jiyana xwe ji dest dane. Li hêla din pevçûnên li bajarê El Babê ku dikeve başûrê Helebê dijwar bûn. Pêşveçûna hêzên kurd ku amadekariyên operasyona Reqqa û Cerablûse dikin jî didome. Hêzên kurd ên ku hefteya borî Bendava Tişrînê ya ku xwedî cihekî stratejîke kontrol kiribûn niha jî berê xwe didin bajaroka Minbîcê. Çavkaniyên li herêmê radgihînin ku hêzên kurd 10 km nêzikî Cerablûsê bûne û hat zanîn, DAIŞ'a ku têkiliya wê ya bi Reqqayê ve hat qûtkirin, li Cerablûsê lawaz bûye.

### YPG ber bi Cerablûsê ve diçe

Pêşveçûna Hêzên Sûriya Demokratîk ku bi serpereştiya YPG'ê li hember DAIŞ'ê dîsa dest bi operasyonan kiriye pêşve diçe. Hêzên ku Bendava Tişrînê û derdora wê kontrol kirin, gelek derbên giran li DAIŞ'ê xistin û hemû êrîşên endamên DAIŞ'ê vala derxistin. Çavkaniyên li herêmê radigînin ku hêzên kurd ber bi Minbîcê ve pêşve diçin. Bajarokê Minbîcê dikeve başûrê Cerablûsê ji bo DAIŞ'ê ku riya Reqqa-Heleb û operasyonên bakûrê Helebê weke navend tê bikar anîn, xwedî girîngiyeke stratejîk e. Ajansa Mehr News a ku navenda wê li Tehranê ye ragihand ku Artêşa Sûriyê û Hizbullahê ber bi El Babê ya niha di destê DAIŞ'ê de ye ve diçin û li herêmê pevçûnên dijwar rû didin.

### "Minbîc, Cerablûs û Ezaz wê bên bidestxistin"

Ji fermandarên YPG Şoreş Hesen, rewşa dawî û çalakiyên YPG ji Bas Nûçeyê re nirxand û diyar kir ku Hêzên kurd wê kelehên stratejîk ên DAIŞ'ê Minbîc û Cerablûsê jî rizgar bikin. Hesen destnîşan kir ku nayê qebûlkirin ku gelê herêma Minbîc, Ezaz û Cerablûsê di bin zilma DAIŞ'ê de bijîn. Hesen ragihand ku weke hêzên kurd ew bi rijd in ku DAIŞ'ê ji Sûriyeyê derbixînin û wiha axivî: "Hevpeymaniya ku DYA'yê serweriya wê dike û Rûsya, li dijî DAIŞ'ê piştgiriyê didin me." Hesen amaje pê kir ku ew dê dorpêça El Nûsra û Ehrar el Şamê ya li ser Efrîn û taxa Şêx Meqsûdê bişkînin. Hesen anî ziman ku nêzîke ku mizgîniya serkeftinê bidin gelê Efrînê.

Hesen di derbarê angaştên ku dihat gotin komeke şervanên YPG tevlî refên Pêşmergê Roj bûn de jî axivî û diyar kir ku tiştekî wiha çênebûye. Li aliyê din bi banga TEV DEM'ê bi hezaran Rojavayî li bajarokê Girkê Legê kom bûn û qedexeyên derketina kolanan ên li ser Cizîr, Silopî û Sûrê ku niha jî didomin, protesto kirin.

### Îbrahîm Biro dîsa bû serokê ENKS'ê

Li kongreya ENKS'ê ya ku li bajarê Rojavayê Kurdistanê Qamişlo pêk hat û 60 nûner beşdarbûn de Îbrahîm Biro ji nûve weke serok hat hilbijartin û alîkara wî jî bû Fesla Yûsif. Di kongreyê de ji bilî hilbijartina serokatiyê, geşedanên li herêmê jî hatin niqaşkirin û encamnameyek hat ragihandin. Hin sernavên mijarê ên di encamnameya kongreya ENKS'ê cih digirin ev in: "Sedema cih negirtina kurdan a di daxûyaniya ku piştî civîna Riyadê hat aşkera kirin, ji kêmasiyên nûneran in. ENKS wê beşdarî Cenevre III bibe û ji bo kurdên Rojavayê Kurdistanê mafên xwe bidestbixin wê xebatan bimeşîne. Ji bo ku dengê kurdan bigihîne cîhanê wê çalakiyên cihe pêk bîne." ENKS'ê ji ber alîkariyên ji bo gelê Rojava spasî Weqfa Alîkariyê ya Barzanî kir û kiryar û nêzîkatiya asayîşa ku girêdayî PYD'ye jî şermezar kir.

### Associated Press: Beşar Esad wê heta adara 2017'yan bimîne

Li gor hin belgeyên ku Ajansa Nûçeyan a Associated Press ya DYA'yê bidestxistî, rayedarên DYA'yê pêşbînî dikin ku çûna Beşar esad wê heta Adara 2017'an berdewam bike. Ajansa AP'ê da zanîn ku wan belgeyeke di derbarê qeyrana Sûriyeyê de ku rayedarên DYA'yê amade kirine, bidestxistine. Li gor belgeyê, rayedarên DYA'yê pêşbînî dikin ku Beşar Esad wê 14 mehên din jî li ser peywîrê be û ji peywîrxistina wî wê heta Adara 2017'an berdewam bike. Di belgeyê de tê gotin ku dibe ku li Sûriyeyê hilbijartinên serokatî û parlamentoyê di Tebaxa 2017'an pêk werin.

Di derbarê mijarê de Wezîrtîya Karên Derve ya DYA'yê jî daxwûyanîyek da û diyar kir ku belge sala par hatiye amade kirin.Alîkarê Wezîrê Karên Derve John Kirby, ragihand ku belge ne fermî ye. Kirby got ku belge, pêşbînî û planên civaka navneteweyî nayîne ziman. Li Viyanayê di 14'ê Mijdara 2015'an bi beşdarbûna 17 welatan civînek pêk hat û di civînê de li ser çareserkirina qeyrana Sûriyê rêkeftinek pêk hatibû. Welatên beşdar li ser mijara ku di nava 6 mehan de hikûmeteke derbazkirinê ava bibe û di nava 18 mehan de jî hilbijartin pêk werin de li hev hatinek çêkiribû. Di 25 Çileyê 2016'an de, ji bo çareserkirina qeyrana Sûriyeyê, wê li Cenevreyê Rejîma Sûriyeyê, Opozîsyona Sûriyeyê û 17 Nûnerên welatên beşdar kom bibin.

### Wê alîkarî ji bajarokê Madaya re biçin

Li aliyê din Neteweyên Yekgirtî (NY), ragihand ku rêveberiya Şamê ji bo ku alîkariyê bigihinin bajarokê Madayayê ku di bin dorpêçê deye û ji birçîbûnê agahiyên mirina mirovan tên, hatiye qanî kirin. Di daxwûyaniya ku ji aliyê Komîseriya Bilind a Penaberan a NY hatiye kirin de, hat gotin, ew kêfxweşin ji bo ku Hikûmeta Sûriyeyê destûr daye ku alîkariya mirovî bigihînin bajarokên Madaya, Fuaa û Kefriye. Hat ragihandin ku wê di nava çend rojan de dest bi gihandina alîkariyên mirovî bo bajarokên di bin dorpêçê de bê kirin. Bajarokê Madaya ji Tîrmeha 2015'an û vir ve di bin dorpêça artêşa Sûriyê û hêzên Hîzbûllahê deye.Piştî ku di medyaya civakî de wêne û dîmenên zarok û sivîlan ên ku ji birçîna jîyana xwe ji dest dane hatin parvekirin û belavbûn, bertekên li hember rejîma Sûriyeyê zêde bûn û saziyên alîkariyê yên navneteweyî jî bi daxwûyaniyan ev şermezar kirin. Saziya Çavdêrîkirinê ya ku navenda wê li Londonê ye (MÎRSAD) bîlançoya 2015'an a şerê navxweyî yê li Sûriyeyê aşkera kir. Li gor rapora Navenda Çavdêrîkirinê li Sûriyeyê, di sala 2015'an de, 55 hezar û 219 kesan jîyana xwe ji dest dane.



Rêzan Karwan

# Serxwebûna HRK'ê di rojeva Tirkiyê jî de ye

Daxuyaniyên Serokê HRK'ê Barzanî li herêmê deng vedide û dibe rojeva hemû welatên li herêmê. Yek ji dewlata ku niha van geşedanan ji nêz ve dişopîne jî Tirkiye ye. Di çapemeniya Tirkiyeyê de daxuyaniyên Barzanî û referandûma serxwebûnê gelekî hat niqaşkirin û gelek li ser hat sekinîn.

Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) dîsa dest bi amadekariyên referandûma serbixwebûnê kir. Piştî ku rêxistina tûndrew DAIŞ li Kurdistanê li hember pêşmergeyan têk çû û dîplomasiyeke xûrt hat meşandin, sexwebûna RHK'ê jî ket rojevê û niha amadekariyên referandûmê tên kirin. Beriya bi çend hefteyan Serokê RHK'ê li gel serkirdeyên PDK'ê civiya û daxwaz ji wan kir ku bi aliyên siyasî re rûnên û ji bo rapirsîna serbizwebûnê bi wan re gotûbêj bikin. Daxxuyaniyên Barzanî li herêmê deng vede û bû rojeva hemû welatên li herêmê. Yekji dewlata ku niha van geşedanan ji nêz ve dişopîne jî Tirkiye ye. Di çapemeniya Tirkiyeyê de daxuyaniyên Serokê RHK'ê Barzanî û referandûma serbixwebûnê gelekî hat niqaşkirin û gelek li ser hat sekinîn. Akademîsyen, siyasetmedar û nivîskaran helwesta Tirkiyeyê ya li hember serbixwebûna Kurdistanê ji Bas Nûçeyê re nirxandin.

**"Pêwendiyên Tirkiyê di herêmê de tenê bi RHK re hene"**

Akademisyên Özkan Gökcanê li ser kurdên RHK'ê û Rojava kar djke di derbarê helwesta Tirkiyeyê de ji Bas Nûçeyê re axivî û got ku helwesta Tirkiyeyê ya li hember serbixwebûna Rêveberiya Herêma Kurdistanê ne diyar e. Gökcan destnîşan kir ku du sedemên ve ne diyariyê hene û wiha axivî: "Niha di Rojhilata Navîn de pêwendiyên Tirkiyeyê ji xeynî Rêveberiya Herêma Kurdistanê bi tu dewletan re baş nîn in û wiha dewam kir, RHK ji bo Tirkiyê mitefikê herî girîng ê herêmê ye. Ji ber wê yekê îxtîmale ku ji serbîxwebûna Kurdistanê re bibêjin erê û piştgiriyê bidin vê daxwazê. Ya duyem jî rêgezeke Tirkiyê heye ku pêwendiyên baş jî bin xerab jî bin her tim tîne ziman û weke xeta sor bi nav dike, ew jî hevgirtina axa Iraqê ye. Ev prensîbek dîrokî ye. Her tim digotin em destûr nadin ku li Bakurê Iraqê Kurdistaneke serbixwe derkeve holê û her tim ev dûbare dikirin. Ji ber wê yekê îxtîmale ku Tirkiye bi erênî lê nenêre û bibeje na." Gökcan anî ziman ku dîsa jî Tirkiye, wê dengê xwe dernexîne li hember vê prosesê û di heman demê de bi dengekî bilind û aşkera nabêje erê jî.

**"Ew ê Tirkiye li gor konjunktura navdewletî tev bigere"**

Her wiha Özkan Gökcan da zanîn ku di qada navneteweyî da jî dîplomasiyek heye û Mesûd Barzanî herî dawiyê bi nûnerên 36 dewletan re civînek pêk anî û di nav hevdîtinan deye. Gokcan balkişand ser rewşa herêmê û got ku Tirkiye êdî nikare bêje ez di herêmê de polîtîkayeke hevgirtina axa Iraqê birêve dibim û li hember serxwebûna Kurdistanê me. Gökcan bal kişand ser geşedanên li herêmê û wia axivî: "Tirkiye,wê vê prosesa serbixwebûne bişopîne û li gor helwestên aktorên din nirxandina xwe bike û biryara xwe zelal bike." Gökcan li hêla din diyar kir ku Tirkiye di demeke wiha de ku qeyaraneke enerjiyê bi Rusyayê re rû da ye de û herêmeke weke Kurdistanê ku hevpeymanê herî girîng ê siyasî û enerjiye ye, daxwaza kurdan a sexwebûnê bi helwesteke tûj red nake û wê li gor konjoktora navneteweyî biryara xwe diyar bike.

**" Serxwebûna Kurdistanê di berjewendiyên Tirkiyeyê de ye"**

Akademîsyenê pisporê pewendiyên navdewletî Hüseyin Şeyhanlıoğlu jî li ser vê mijarê ji Bas Nûçeyê re axivî û ragihand ku Tirkiye, di salên 90'î de parçebûna Iraqê xeta sor a Tirkiyeyê bû û li hember vê yekê bû. Lê piştî 2003'yan ku Rêveberiya Herêma Kurdistanê bi awayekî fermî di makezagona Iraqê de cih girt, helwesta Tirkiyeyê gûherî. Şeyhanlio»lu amaje pê kir ku Tirkiyeyê di dema Serokkomaroya Turgut Özal de paseportên sor dan Mesud Barzanî û Celal Talabanî û herî dawiyê beriya mehekê, hem di serdana Mesud Barzanî de û hem jî di ya Nêçîrvan Barzanî de protokol û pêşwazîkirina Tirkiyeyê helwesta Tirkiyê nîşan dide. Şeyhanlıoğlu axaftina xwe wiha domand: "Di serdana Serokwezîr û Serokê Kurdistanê de Alaya Kurdistanê jî di protokolê de cî girt. Ev tê wê wateyê ku Tirkiye dibêje em êdî nikarin hevgirtina axa Iraqê biparêzin û aliyekî wê nemaye ku em biparêzin."

**"Tirkiye wê serxwebûna Kurdistanê nas bike"**

Hüseyîn Şeyhanlıoglu her wiha destnîşan kir ku serxwebûna Herêma Kurdistanê di berjewendiyên Tirkiyeyê de ye ji bo ku bandora Îranê ya li ser herêmê bê şikandin dê Tirkiye piştevaniya Kurdistanê bike. Li hêla din Şeyhanlıoğlu, ragihand ku ji xwe ne pêkane axa Iraqê û Sûriyêyê hevgirtî bimîne axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Ji ber wê yekê ji bo Tirkiyeyê sexwebûna herêmeke ku piştgiriyê bide wê, ne dezavantaj e. RHK, di Rojhilata Navîn de mitefikê Tirkiyê yê herî girîng û mezin e. Ji ber wê yekê Tirkiye dê serxwebûna Kurdistanê nas bike."

**"Di nava van şert û mercan de daxwaza serxwebûnê tê fêm kirin"**

Nûnerê TV24'ê yê Enqerê Yaşar Taşkin Koç jî pirsên Bas Nûçeyê bersivandin û ragihand ku Tirkiye weke rêgez li hember parçebûna welatên cîrane, lê heke şert û merc ji bo serxwebûnê jêveneger bin û biryara serxwebûnê bê dayîn jî ji erêkirinê zêdetir tu tiştê nakeve aliyê Tirkiyê. Taşkin Koç her wiha diyar kir ku Tirkiye ne alîgirê parçebûna welatên cîran e. Ji ber ku herêm gelek tevliheve û di pêşerojê de çi heye ne diyar e. Lê her civak xwedî mafê biryara xwe ye û got ku rewşeke wiha derketibe holê wê biryara xwe bidin. Taşkin Koç bal kişand ser helwesta Tirkiyê û wiha axivî: "Ji aliyê din pirsgirêkên ku niha Herêma Kurdistanê dijî û kaosa ku niha Iraq tê de dibe sedema biryarên bi vî awayî û ev daxwaza serxwebûnê tê fêm kirin. Niha Mûsil û beşek axa Iraqê di destê DAIŞ'ê de ye û li navenda Bexdayê jî bi zextên Îranê blok û nêrînek Şîî çêbûye." Taşkin Koç destnîşan kir ku li hemberî vê rewşê, kurd zêdetir ber bi pozîsyona xwe parastinê ve diçin.

**"Divê em rêzê ji vîna gelê kurd re bigirin"**

Rojnameger û Nivîskar Oral Çalışlar ji di derbarê referandûma serxwebûna Herêma Kurdistanê û helwesta Tirkiyeyê a li hember serbixwebûnê, ji Bas Nûçeyê re axivî diyar kir ku her netewe xwedî mafê diyarkirina çarenûsa xwe ye. Lewre heke kurdên, Kurdistana Iraqê bixwazin dewleteke serbixwe ava bikin bi vî awayî bijîn divê em jê re rêzê bigirin. Çalışlar got, ji xwe niha rêveberiyeke xweser heye û wiha axivî: "Mafê tu kesê jî tune ye ku ji derve midaxeleyî vîna gel bike. Kurdên wê herêmê wê geşedanên li herêmê ru didin jî li ber çav bigirin û heke biryara sexwebûne derket holê ji me re rêzgirtin dimîne." Çalışlar destnîşan kir ku helwesta Tirkiyeyê, herî baş Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî dizane û rayedarên pile bilind ên Herêma Kurdistanê ku Serok Barzanî jî din av de bû û rayedarên Komara Tirkiyeyê gelek hevdîtin kirin. Çalışlar amaje pê kir ku Ji ber wê yekê rayedarên Herêma Kurdistanê dizanin ku nêrîna Tirkiyeyê çi ye û ew ê xwedî helwesteke çawa be.


Oral Çalışlar


Hüseyin Şeyhanlıoğlu


Yaşar Taşkın










İsmet Sîverеklî

# Cihudê Sêwregî

Goreyê hesibnayîşê nûfusê serra 1914'an nawendê Sêwregî de 136 yahudî ciwîya yêne. Cihudanê mîyanê Sêwregî de tewr namdarê ci malbata Sahud û Ilia Xidirî ya. Haham Azur û Murdoh nê malbatan ra yê. Cihudê ke roja ma de Sêwregî de ciwîyenî, pêrkoyê xo kirmancan (zazayan) manenê û bîyê zazayê sunî. Mavajê keyeyê Qosan û Leblebîyan (Leblebiciler)



Yahudîyanê Sêwregî miyan ra tewr namdara xo, aktirîsta Yeşil Çamî Meral Zeren a. Fina Toreyo ke mîyanê şarî de vajîno Serokwezîrê Dewlata Îsraîlî Benyamin Netanyahu eslê xo sêwregijo.

Sêwregî hetê dînî ra bajarêda merkezî ya. Bajar de dînê ke sey "dînê heqî" yenê qebûlkerdene bi seseran pêmîyan/têkişte de ameyê piratîk kerdene. Nê pratîk ra demê ma de qet çiyê nêmendo û dînî Îslamî bîyo serdest.

Kêm-vêşî 120 serrî verê nayê, merkezê şaristanê Sêwregî de ciwîyayîşêde zafrengin ê dînan estbî. Êzdî, cihud, xirîstîyan (armenî û suryanan) û muslumanan Sêwregê kerdbî baxçeyê dînan. Nawendê nê baxçey zî Kûçeyê Şeytanî bî. Demo ke Kûçeyê Şeytanî de şixê êzîdîyan, hahamê cihudan, keşîşê xirîstîyanan û seydayê muslumanan resayêne pê, xoşberêda germ û xorîne dest pêkerdêne...

Na xoşbere bi vengê ezan û zingilî ya biryayêne û keşîşî verê xo dayê kîlîse, seydayî zî verê xo dayêne camî. Ser hênîyê Kûçeyê Şeytanî de tena şixê êzdîyan û hahamê cihudan mendêne, nînan zî bi meselaya Hz. Îbrahîmî ya zorê pê(yewbînan) berdêne.

Her çendê musulmanan sînagogê Yahudîyan û kîlîseyê xirîstîyanan kerdîbî camî zî, şarê bajarî pêmiyan de bi haştî ciwîyayêne.

Demê dihîrî de vengê zingilî û ezanî seye senfonîya Antonio Vivaldi ya mewsîman bajar gerewtêne binê tesîrê xo. Û Yahudî ya zî, sînagogan de mîyanê xo de tora xo girewtêne virarda xo û diwayê xo kerdê. Serekê nê her di Sînagogan, haham Azur û Murdo bîy.

Haham Azur û Murdo, demoke Sulî Camî ver a ravîyartêne, kokê ci ameyê vîrê înan û kewtêne xeyalanê xorînan miyan. Xeyalanê înan de, hewna Sulî Camî sînagog bî û vengê duayê dapîranê înan goşan ver a perayê...!

Keyeyê Cihudanê Sêwregî verdê Diza (Qela) Sêwregî de ameybî awankerdene û nê kezezî kûçeyêdo barî û tengî ver bi rojawanê bajarî bîyêne rêz. Dewletlîyê cihudanê Sêwregî , başûrê bajarî de niştêne ro. Roja ma de, na tax ra vanê, 'Taxa Cihudan' û newe ra ameya restorekerdene.

Verê naz hewtay serrî, Sêwregî de Cihudî ewroyî ra vêşî bîyê û ê bi şarê binî ra têmiyan de ciwîyayê.

Cihudê ke roja ma de Sêwregî de ciwîyenî, pêrkoyê xo kirmancan (zazayan) manenê û bîyê zazayê sunî. Mavajê keyeyê Qosan û Leblebîyan (Leblebiciler)

Cihudê Sêwregî, bi karenê qelaçî, kulav (keçe), asin, zern û hacetanê karî de meşqûl benî. Ez naye zî vaja, cihudî tena merkezê sêwregi nêciwîyayêne. Dewê ke vakurê bajarî de ca genê, tîya zî cihudî ciwîyayêne. Ma vajê dewa areş a ke pêrkoyê xo kirdasî qisey kenê, dewêda yahudîyan bîya. Fina Çêrmung û xeylê dewan de ci de cihudî ciwîyazêne. Verî Çêrmung Sêwregî serv o bîya û tîya de şaro ke ciwîyayo, pêrkoyê xo dimilî bîy û ewro zî dimilî yê. Xeyleyê dimilîyanê na mintiqa matriarşat ê yanî bi nasnameya mayanê xo yenê naskerdene. Mavajê sey dameyran, deelîyan, dahmedan, dehesan, dehîdanan, derzan, dewisan, deevdîyan û demaman

Goreyê hesibnayîşê nûfusê serra 1914, merkezê Sêwregî de 136 yahudî ciwîya yêne. Cihudanê mîyanê Sêwregî de tewr namdarê ci malbata Sahud û Ilia Xidirî ya. Haham Azur û Murdoh nê malbatan ra yê.

Cihudanê Sêwregî ra Hayim Sorkaya, mîyanê şarî de sey Hoyamo Hoymun ameyêne naskerdene û karê tûhafîyekarî kerdêne. Bi nameyê Ahmet Kemal Sorkya(Hoymun), lajê de ci estbî û xortêdo serserî bîy. Şarê Sêwregî ey dest ra aman kerdîbîy. Serra 1944 de Hayim Sorkaya, sedemê sersereya lajê xo ra mecbûr maneno ke Sêwregî terk bikero û şiro Riha. Tiya de Hoymuno serserî, tarîqa ya Rifayî ra Şix Muhammedî nas keno û dînê xo virneno û beno musluman. Dima zî beno mûrîdê ey û serra 1949 de şino eskerîye. Encamê eskerîya xo de kenayêda cihude cûhî nas keno û beno eşqê aye û dînê xo virneno, fina beno cihud. Na mesela ra dima Şix Muhammed, hemberê malbata ey propagandayêda qilêrine dano ramitene. Demêdo kilm de ferdê na malbat ra hewt kesî (Hayim Sorkaya û cinîya ci Mezal, qeçê ci Yosef, Yaakov, Rashal, Ester û Semra) yenê kiştene. Dewlet seba na hadîseyî yahudîyan kena sûçdar û Ezra Azur Bozo, Nesim Binker, Shochet Davut Xidir, haham Azur Acmi û Yosef Hamusî gena binê nezaretî. Rîyê na hadîse Cihudî, serra 1949'an de mejbûr manenê ke heremî terk bikere.

Mîyanê Yahudîyê ke no dem de hereme terk kenê de Sêwregî ra Keyeyê Koran ra zî est o. Keyeyê Koran ra di malbatî serra 1947'an de barkenê şinê Îsraîl.

Verê na mesela serra 1916'an de nezdîyê 200 Cihudê Sêwregî , Diyabekir û Çêrmûg ra heremê bînî terk kerdî û şî Qûdus, tiya de bi nameyê xo ya Sînagogê awan kerd.

Rojama de têkilîyê Cihudê Sêwregî yê ke Qûdus de ciwîyenê, bi bajarê Sêwregî ya zaf xûrt ê û seba averşîyayîşê aborîya Sêwregî karê bezirganî kenê. Mavajê; Şîrketê Sêwregî "Roza İlaç ve Kozmetik" serr de nezdîyê 3 tonî dendikê henaran û konsatrasoyonê ci îhracê Îsraîlî keno.

Yahudîyanê Sêwregî miyan ra tewr namdara xo, aktirîsta Yeşil Çamî Meral Zeren a. Nameyê xo ya rast Meral Güler o û serra 1950 Sêwregî de ameya dinya. Demo ke bena aktirîsta Sînemaya Tirka, peynameyê xo virnena û kena Zeren.

Fina Toreyo ke mîyanê şarî de vajîno Serokwezîrê Dewlata Îsraîlî Benyamin Netanyahu eslê xo sêwregijo.





## Nivîskar Arif Qurbanî:

# Wê aliyên siyasî serxwebûnê de y

"Şerê li dijî DAIŞ'ê serkeftinên leşkeri yên Pêşmerge, dîplomasiya xurt a Mesûd Barzanî rê li ber wê yekê vekir ku Kurdistan bibe hêzêke nû li Rojhilata Navîn. Niha dîsa di rojeva Kurdistanê de rapirsîna serbixwebûna Kurdistanê heye û Kurdistan xwe ji rapirsînê re amade dike. Beriya rapirsina fermî bê kirin Navenda Lêkolînên Raya Giştî lêkolînek kir û li gor rapirsîna Asûdê yê ji sed der 79'ê gelê Kurdistanê ji serxwebûnê re dibêjin erê."

Siwar Bedirxan

Di havîna 2014'an de Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî li Parlamantoya Kurdistanê bal kişandibû ser serbixwebûna Kurdistanê bi axaftina Serokê RHK'ê re parlementoyê dest bi amadekariyên rapirsîna serbixwebûn kir û ji bo amadekariyên rapirsînê lîjne û deste hatin destnîşan kirin. Her wiha piştî amadekariyên serbixwebûnê DAIŞ'ê berê xwe da Kurdistanê û destkeftiyên kurdan ji xwe re kir armanc. Li gel êrîşa DAIŞ'ê Hikûmeta Bexdayê jî mûçeya Hewlêrê birî û mûçeya Kurdistanê neşand. Kurdistana bi şerê DAIŞ û fişara aborî ya Bexdayê re rû bi rû ma di nava çend mehan de bersiva herdû aliyan da û li herêmê bû xwedî tesîreke mezin. Pêşmergeyên Kurdistanê êrîşên DAIŞ'ê yên ser xaka Kurdistanê bi tûndî bersivandin û DAIŞ ji xaka Kurdistanê derxistin û bi awayekî defakto hemû sînorên Kurdistanê kontrol kirin.

Li gel bersiva tûnd a ji bo DAIŞ'ê Kurdistanê dest bi firotina nefta xwe jî kir û ji tîrmeha 2015'an heta niha neftê nade SOMO'yê û nefta xwe bi xwe dişine nava bazara cîhanê. Bi vê kiryara dîrokî Kurdistan ber bi aboriyeke serbixwe pêngaveke avêt. Her wiha şerê li dijî DAIŞ'ê serkeftinên leşkeri yên Pêşmergeyan, dîplomasiya xurt a Mesûd Barzanî rê li ber wê yekê vekir ku Kurdistan bibe hêzêke nû li Rojhilata Navîn. Niha dîsa di rojeva Kurdistanê de rapirsîna serbixwebûna Kurdistanê heye û Kurdistan xwe ji rapirsînê re amade dike. Beriya rapirsina fermî bê kirin Navenda Lêkolînên Raya Giştî rapirsînek kir û li gor rapirsîna Asûdê yê ji sed der 79'ê gelê Kurdistanê ji rapîrsînê re dibêjin erê. Nivîskar û rojnameger Arif Qurbanî, geşedanên dawî yên li Kurdistanê, amadekariyên rapirsîna serbixwebûnê, danûstendinên aliyên siyasî ji Bas Nûçeyê re şîrove kir û anî ziman ku hemû aliyên siyasî ew ê li ser rapirsîna serbixwebûnê yekdeng bin û ew ê piştgiriya biryara referandûmê bidin.

**Beriya bi sal û nîvekê di rojeva Rêveberiya Herêma Kurdistanê de rapirsîna serxwebûnê hebû. Niha DAIŞ ji nav xaka Kurdistanê hatiye derxistin û dîsa rapirsîn di rojevê deye. Raya giştî ya Kurdistanê, partiyên siyasî ji vê rapirsinê re amadeye gelo?**

Belê duriste DAIŞ'ê êrîşî Kurdistanê kir û hemû bername û ajandaya Kurdistanê ji holê rakir. Lê belê îro ew ji nav Kurdistanê dtê derxistin. Êrîşa DAIŞ'ê tesîreke gelek xirab bi ser Kurdistanê de anî. Xelkê Kurdistanê koçberbûn, gelek kurdên Êzîdî weke dîl ketin destê DAIŞ'ê, di heman demê Hikûmeta Bexdayê fişar anî ser Hewlêrê û mûçeya Kurdistanê neşand. Kurdistan bi şerekî dijwar re rû bi rû ma.

Îro DAIŞ ji Kurdistanê tê derxistin û Pêşmergeyên Kurdistanê serkeftinên mezin li hember DAIŞ'ê tomar kirin. Bi daxwaza Serokê Herêma Kurdistanê amadekariyên rapirsîna serxwebûna Kurdistanê tên kirin. Ez di wê baweriyê de me ku divê demil dest ew amadekarî bi rêve biçin û gelê kurd çarenûsa xwe diyar bike. Gelê kurd ji serxwebûnê re amade ye. Hemû kes çaverêyî serxwebûnê ye. Di navbera partiyên siyasî de hin arîşeyên navxweyî hene. Lê belê ez wisa bawer dikim ku ew arîşe ew ê bêne çareser kirin. Lewre hemû hizbên siyasî bi çavên serê xwe xetereya li hember Kurdistanê dibînin.

**Yanî ji bo rapirsinê yekdengiya siyasî mimkûn e ku pêk were?**

Mimkûne pêk were. Hemû hizbên siyasî li hember Bexdayê xwedî helwes in û hemûyan ji bo serxwebûna Kurdistanê daxuyaniyan belav dikin û eşkere dikin ku divê serxwebûn demil dest bê ragihandin. Ez di wê baweriyê de me ku serxwebûna Kurdistanê hizbên siyasî nêzîkî hevdû dike û ew ê hizbên siyasî rêk bikevin. Li ser Kurdistanê gelek xetere hene Ez di wê baweriyê de me ku hizbên siyasî vê rewşa giran dibînin û ew ê nêzîkî hevdû bibin û yekdengiye di navbera wan de saz bibe. Bereya Sunne û Şîe dîsa radibin hevdû. Kurdistan di navbera vê berêyê deye. Her wiha çavê hemû dinyayê li neft û gaza Kurdistanê ye.Welatên rojava giringiyê didin aramiya li Kurdistanê. Di warê enerjiye de berê wan li Kurdistanê ye. Neft û gaza Kurdistanê giring e û bi geşedanên dawî yên li herêmê neft û gaza Kurdistanê bêhtir hat rojevê. Welatên rojava naxwazin xwe mehkûmî neft û gaza Rûsya û Îranê bikin. Kurdistan ji bo wan giring e.

**Hikûmetê dest bi hin referandûmên darayî kiriye. Her wiha tê zanîn ku amadekariyên destûreke nûjî berdewam dikin. Hikûmet bi van referandûmên darayî dixwaze çi bike? Li hêla din amadekariyên destûrê di çi astê dene?**

Hikûmet dixwaze rê li ber hin xerciyan bigire û rêyên nû yên dahatê ji Kurdistanê re peyda bike. Hin amadekarî hene û ev tên eşkerekirin. Hewcedike ku parlamento li ser vê babetê kar bike û nexşerêyêkê derxe. Pêdawîstiya Kurdistanê bi xebata parlamentoyê heye. Divê parlamento li ser siberoja Kurdistanê bernameyan derxîne û wan cih bi bike. Eger wisa nebe ew ê bername xebat û amadekarî bi encam nebin. Divê partiyên siyasî yên Kurdistanê li parlementoyê li ser çarenûsa aborî,darayî, navxweyî ya Kurdistanê bidin.

Li gor hin agahiyan, ez jî wisa dizanim ku xebatên destûreke nû jî hene. Ew jî divê bê lihevkirin û hevdengiya partiyên siyasî pêk were. Hewceye arîşeyên destûra berê yên heyî hemû ji holê bên rakirin û li ser destûreke din rêkeftina aliyên siyasî destûreke nû ji Kurdistanê re bê amade kirin. Hewcedarî bi destûreke nû heye ku arîşeyên di warê rêveberiyê çareser bibin. Eger arîşe çareser nebin destkeftiyên heyî hemû ji nav diçin. Tu kes namîne.

"Ez di wê fikrê de me ew ê aliyên siyasî yên YNK'ê û PDK'ê dîsa li hev kom bibin û rêkeftineke stratejîk ji bo siberoja Kurdistanê eşkere bikin. Ya ku pêwîste jî ew e. Serkirdeyên herdu partiyan jî dizanin ku nakokiyên navxweyî çi bi ser Kurdistanê de anîne. Gelê kurd jî wê yekê dixwaze û dixwaze aliyên siyasî li gel hevdû rêk bikevin."





# di rapirsîya yekdeng bin

**Di nava YNK'ê de çi diqewîme? Ew ê kongre pêk were gelo? YNK bûye çend bere?**

Rast e, di nava YNK'ê de qeyraneke siyasî heye û çend dengên ciyawaz ji nava YNK'ê derdikevin. YNK niha bi qeyrana navxweyî re eleqedar e. Li aliyekî Kosret Elî Resûl heye. Li aliyekî Berhem Salih heye û li aliyê din Hêroxan jina Celal Talabanî heye. Pêwîste YNK jî kêşeyî navxweyî çareser bike û demil dest kêşeyên navmala YNK'ê ji holê rake. Arîşêyên hizban ê navxweyî jî tesîrê li ser rewşa wî welatî dikin. Ez di wê baweriyê de me ew ê herin kongreyê û ew ê arîşeyên xwe çareser bikin. YNK xwedî tecrûbeyeke mezin e. Ew ê kêşeyên li nav wê jî bi dawî bibin. Em hêvî dikin ku di demeke kurt de ew yek pêk were.



**Niha di rojeva YNK'ê û PDK'ê de rêkeftina stratejîk heye. Egera wê yekê heye ku YNK û PDK dîsa li ser rêkeftineke stratejîk rêk bikevin?**

Çima ew ê rêk nekevin? Ew ê rêk bikevin û dîsa ji bo berjewendiyên Kurdistanê kar bikin. Me hemûyan bi çavên xwe dîtin ku çawa li hev kom bûn û rêkeftin di navbera wan de saz bû. Ez di wê fikrê de me ew ê aliyên siyasî yên YNK'ê û PDK'ê dîsa li hev kom bibin û rêkeftineke stratejîk ji bo siberoja Kurdistanê eşkere bikin. Ya ku pêwîste jî ew e. Serkirdeyên herdu partiyan jî dizanin ku nakokiyên navxweyî çi bi ser Kurdistanê de anîne. Gelê kurd jî wê yekê dixwaze û dixwaze aliyên siyasî li gel hevdû rêk bikevin. Eger wisa nebe û her partiyek li gor serê xwe tev bigere wê demê ew ê bêhtir xetere li ser Kurdistanê peyda bibe. Lewre hewcedarî bi hevgirtineke siyasî û berjewendiyên kurdan heye. Ez hêvî dikim ku ev yek jî çareser dibe. Çareser jî dibe.

**Ez dixwazim bêm ser rewşa Tevgara Goranê, di medyayê de amaje li ser wê yekê heye ku Îran ji ser Goranê destêwerdana Kurdistanê dike. Tu ji bo vê angaştê çi dibeêjî?**

Peywendiyê hemû aliyên siyasî bi Îranê re hene. Peywendiyê YNK'ê bi Îranê re çawa bin peywendiyên Goranê û PDK'ê jî wisa ne. Ez ne di wê baweriyê de me ku Tevgera Goranê ji bo Îranê tev digere. Lê belê tiştek heye ku divê em qebûl bikin. Îran li herêmê gelekî bi hêz e. Tesîra wê li ser gelek paytêxtên welatan heye. Mimkûne ku tesîra wê li ser aliyên siyasî yên kurdî jî hebe. Bexda, Şam û gelek paytextên din ê welatan hevpeymanên Îranê ne. Di navber Îran û Erebîstana Siûdî de îro mûşkîleyeke mezhebî peyda bûye. Mimkûne tesîra vê şerê mezhebî bi ser Kurdistanê jî de were.

**Peywendiyê Tevgera Goran û PDK'ê di çi astê dene. Egera wê yekê heye ku dîsa Goran beşdarî hikûmetê bibe û herdu alî dîsa li hev bicivin?**

Ew ê rêk bikevin. Ez wisa bawer dikim ku ew ê herdu alî dîsa li hev kom bibin. Bala xwe bidine YNK'ê û PDK'ê şerekî bê wate yê birakujiyê bi hev re kirin û bûn sedema şehîdbûna bi hezaran Pêşmergeyên kurd lê belê li hev kom bûn û ew çareser kirin. Dema berjewendiyên netewî hat rojevê hewcedike ku hemû alî dev ji arîşeyên navxweyî berdin û berjewendiyên welatê xwe biparêzin. Çawa YNK'ê û PDK'ê li hev kiribe û li ser maseyekê li hev kombûbin û peymaneke stratejîk danîn. Ez di wê baweriyê de me ku ew ê Goran û PDK jî li hev kom bibe û hin arîşeyên ku rûdanin çareser bikin. Min li jor jî amaje kir. Eger hemû alî li hev nekin yek ji wan jî namîne. Bihêzbûna aliyên siyasî bu hevgirtina wan mimkûne. Ev rewş hatiye tecrübe kirin û me hemûyan ew li ber çavên xwe dîtiye.

**Em bên ser meseleya Erebîstana Siûdî û Îranê. Ew ê rageşiya Îran û Erebîstana Siûdî tesîreke çawa li Kurdistanê bike?**

Şerê niha yê Rojhilata Navîn şerên mezhebî ne. Kurdistan jî di navbera aliyên Sûnne mezheb û Şîe mezheb deye. Divê siyaseteke hevsengî bê birêvebirin da ku ew şer bi ser Kurdistanê jî de neyê. Heta niha rayedarên Kurdistanê Kurdistan ji wî şerî parastin û rê li ber wê yekê girtin. Ez di wê baweriyê de me ku ji niha û bi şûn de jî ew ê siyaseteke wisa bi rêve biçe. Nabe ku kurd jî bibin parçeyekî şerê mezhebî yê herêmê. Ev yek ew ê nakokiyên li Kurdistanê zêdetir bike. Ez wê yekê hevî dikim ku kurd hişyar bin û nekevin dû hin hesabên berjewendîparêz.

**Egera wê yekê heye ku Îran li hember serbixwebûna Kurdistanê helwest nîşan bide û Kurdistan jî di bereya sûnneyan de cih bigre û bi Erebîstana Siûdî re bibe hevpeyman?**

Îran ji mêj ve dijberiya xwe ya li hember Kurdistana serbixwe eşkere kiriye. Îran dixwaze Kurdistan jî bi ser Bexdayê ve be û Kurdistan ji Iraqê cuda nebe. Kurdistaneke azad ne di berjewendiyê Îranê deye. Îran naxwaze Kurdistan azad bibe û li herêmê weke hêzeke serbixwe tev bigere ev ne di berjewendiya Îranê deye. Îran hevpeymanê Bexdayê ye. Ew û Bexda yek in ku Îran çi bixwaze Bexda jî wê yekê dixwaze. Hêza Îranê li herêmê gelek e. Geşedanên dawî û hatina Rûsya ya ji bo herêmê jî destê Îranê bihêztir kiriye.

**Herî dawî Parlementoya Iraqê peşka Hewlêrê ya ji sedî 17 pesend kir. Gelo mimkûn e peywendiyên Bexda û Hewlêrê dîsa baş bibin û diyalogeke pozîtiv di navbera herdu aliyan de pêk were?**

Na, mimkûn nîne ku herdu alî dîsa bibin weke berê û li hev bikin. Durist e. Bexdayê mûçeya Hewlêrê pesend kir. Lê ew tenê li ser kaxizê pesend kir. Hemû tişt li ser kaxizê ma. Ji sala 2014'an heta niha mûçeya kurdan nehatiye şandin. Ew ê Iraq ji niha û pê ve jî mûçeya kurdan neşîne. Kurd jî piştî vê saetê ne mejbûrê Iraqê ne. Kurd jî ji xwe reyên alternatîv peyda dikin û nefta xwe difroşin. Ber bi qonaxeke din ve diherin. Piştevaniya mezin a ji bo kurdan heye. Şerê DAIŞ'ê kir ku doza rewa ya kurdan ji aliyê cihanê bê qebûl kirin. Dîplomasiyeke berz a kurdan heye. Li hêla din neft û gaza Kurdistanê gelekî giring e. Çavê hemû dinayayê li neft û gaza Kurdistanê ye. Aramiya Kurdistanê ji bo hemû herêmê û ji bo hemû welatên cihanê giring e.

BasNûçe 11 - 17 Çile 2016





# CİZÎRA BOTAN

Cîzîr li gor pergala rêvebiriyê navçe ye û bi bajarê Şirnexê ve girêdayî ye. Xopanekî û 26 gund û 23 mezra li ser Cizîrê ne. Cizîr ji rojava ve cîranê Hezexê, ji bakûr ve cîranê Şirnexê û ji başûr ve jî cîranê Başûrê Kurdistanê ye. Nifûsa Cizîrê tevî gundan nêzîkî sed û pêncî hezarî ye. Cizîrî bi temamî kurd in.

Welat Baz

Bajarê Cizîrê ku di rojên dawîn de bi şerê kolanan û pevçûnan tê bibîranîn, di nav sêgoşa Başûrê Kurdistan û eyaletên Botan û Mêrdînê de cîh digre. Bajêr li ser rêya Zaxo û Ruhayê ye. Navêkî din ê vê rêyê, rêya hevreşim e. Herwiha li Cizîrê heta serê vê sedsalê li ser Dîjleyê bi kelekan jî bazirganî û rêvîngî jî dihat kirin.

## Erdnîgar

Pîvana xaka Cizîrê 460 km² ye. Erdnîgara Cizîrê wek kodekî ye. Bajêr ji deryayê 400 metre bilind e. Dora Cizîrê ji bakûrê rojhilat ve bi çiyayê pîroz Cûdî ve, ji bakûrê rojava ve bi çiyayên Gabar, Kêra û Çiyayê Dêra ve, ji rojava ve jî, ji alî Çiyayê Spî ve hatiye pêçan. Bajêr di nav hêlîlarên 37 û 19 û di nav hêlîpanên 42 û 11an de cîh digre. Cizîr a ku pala xwe daye Çiyayê Cûdî, serê şefeqan di bin siya vî çiyayî a hênik de şiyar dibe.

## Deşt Cizîrê

Li ser xaka Cizîrê deştekî bi heman navî heye. Deşt ber bi Girgêemo (Sîlopî) ve dirêj dibe. Ew sînorê Sûrî û Tirkiyê, yanê Başûr û Bakûrê Kurdistanê ji hev diqetîne. Dirêjiya deştê 40, firehî jî 10 km ye. Xaka deştê xêrûbêra xwe ji aluwyonên Xabûr û Dîjleyê digre. Derûdora deştê ber bi Cûdî ve bilind dibe. Havînên deştê germ û ziwa, zivistan jî serma û şilî ye. Li deştê li keviya çemên Dîjle û Xebûrê kiştûkala avî û li deverên din jî a ziwa tê kirin û berhemên wek genim, ceh, nîsk û pembû tê çinîn. Ji xaka Cizîrê hin maden jî tên derxistin. Wek mînak li heremê 6 milyon ton rezerwên asfaltît heye.

## Bajarê Dîjleyê

Di xaka Cizîrê de çemê sereke Dîjle ye. Dîjle wek xelekekî ziv li derûdora Cizîrê lefiya ye. Di demên kevn de ji bo ku bajêr di bin avê de nemîne milek li çem hatiye zêdekirin û li dora bajêr hatiye gerandin. Dîjle wek çavkaniya jiyana Cizîrê ye. Çem piştî ku ji xaka Banê û Hezexê digîjê Cizîrê û li vir feyz belavdike, wek şûrekî avî, deştê ji jev diqetîne û berê xwe dide Girgêemo. Piştî ku ava Xebûr jî tevlî vî çemê bihûşti dibe, ew berê xwe dide Derya Basrayê. Ji bilî Dîjlê di xaka Cizîrê de Çemê Saqlan, Çemê Rîsûr û Çemê Nerdûş jî hene.

Ji aliyê din ve dewletê di bin Proja GAPê de duxwaze li nêzî Cizîrê li ser çemê Dîjlê bi navê Ilısu bendavekî çêbike. Ger ku ev bendav bê avakirin, Dewleta Tirk kare ava Dîjleyê biçikîne û Irak û Sûrî ji ava vî çemî bêpar bihêle.

## Aborî

Aboriya Cizîrê bi rêya Xabûrê ve girêdayî ye. Demên ku rê û deriyê Iraqê vekirî be, her roj bi hezaran kamyon di cadda nav Cizîrê re derbasdibin. Barê kamyonan bi piranî mazot e. Li Cizîrê bi sedan malbat li ser bazirganiya vê rê û kamyonan îdara xwe dikin. Dîsa bi dehan dikkanên Cizîrê pêdiviyê kamyon û şoforan tedarik dikin û aboriya Cizîrê dimeşînin.

Piştî serhildana Başûrê Kurdistanê a sala 1991an, car caran deriyê Xabûrê ji alî dewletê ve tê girtin. Di van deman de Cizîr dikeve nav tengasiyên mezin. Rûyekî Cizîrê ku ew îro bûye bajarekî xizaniyê. Bi sedan zarokên wî bajarî pêxwas û di nav kincên qetandî de mezin dibin. Zarokên Cizîrê di bin stem û xizaniyê de lê li ser mîradekî kûr mezin dibin û bi çavên ku hêvî jê dirjê ber bi pêşerojê ve dimeşin.

## Rêvebirî

Cîzîr li gor pergala rêvebiriyê navçe ye û bi bajarê Şirnexê ve girêdayî ye. Xopanekî û 26 gund û 23 mezra li ser Cizîrê ne. Cizîr ji rojava ve cîranê Hezexê, ji bakûr ve cîranê Şirnexê û ji başûr ve jî cîranê Başûrê Kurdistanê ye. Nifûsa Cizîrê tevî gundan nêzîkî sed û pêncî hezarî ye. Cizîrî bi temamî kurd in. Rûniştvanên vî bajarî bi zarava kurmancî diaxifin û ji mezheba sunî ne. Heta çend sal berê li gundên wek Şax û Heblêr gelek malbatên suryanî jî hebûn. Lê ev gund hatin şewitandin û van sakînên Cizîrê jî bar kirin.

## Bajarekî firenav

Çîroka navê Cizîrê heta 6 hezar sal berê diçe. Di dema Şaristaniya Gûtiyan de navê bajêr 'Gerzubakartda' bûye. Di çavkaniyên Persiyan de, ji bajêr wek 'Bazîdba' jî tê bahskirin. Dîsa di hinek çîrokan de navê Cizîrê di demên kevn de wek 'Îrem' derbas dibe.

Demekî ku rûniştvanên bajêr li hember lehiyê qanalan kolan û li dora bajêr lefandin Cizîr wek nîv giravekî di nav avê de ma. Piştî ku Artêşa Ereb ket Cizîrê vê derê wek 'Cezire-yî Îbnî Emer' binav kir. Yanê 'Girava Emer'. Bajêr piştî Mîrnîşîna Ezîzan di nav Kurdan de wek 'Cizîra Botan' hat binavkirin. Di dema hukumdariya Mîr Şeref de jî wek 'Cizîra Şeref' hat zanîn.

Piştî avakirina Komara Tirk navê bajêr wek 'Cizre' hat guhertin. Lê kurd heta niha bajarê xwe bi wek 'Cizîra Botan' binav dikin.

## Birca belek

Li Kurdistanê li her bajarekî kevnare, keleyekî heye. Kela Cizîrê jî li welatê rojê, yek ji kelêyên herî kevn e. Li gor çavkaniyên nivîskî sûr û kela Cizîrê b.z di salên 4 hezaran de di dema Gûtiyan de hatiye avakirin. Dîwarên sûrê di şeklê keştiyekî de ye. Tê gotin ku ev şeklê keştiya Nûh e û berê wê li çiyayê Cûdî ye. Kele li bakûrê bajêr li keviyên çemê Dîjlê ye. Kele li ser sê qatan hatiye avakirin û ji 360 odeyan pêk hatiye. Di demên babîlî, asûrî, medî û abbasiyan de hatiye tamîrkirin û cîhên ku xerabûne ji nûh ve hatine çêkirin.

Kela Cizîrê ji kevirên reş hatiye lêkirin. Di kelê de saray, mizgeft, medrese, zîndan, diwan û beşên leşkeran hebûye. Di dema Mîr Tajdîn de bin qesra xwe ji bo dev û hespên mêvanan axurek hatiye avakirin. Di dema Mîr Seyfedîn de bi navê Seyfiye medreseyekî hatiye avakirin, ku hîn jî li ser kelê mîhraba vê medresê disekine.

Helbet kela Cizîrê bi Birca Belek navdar e. Qişla Hamîdiye jî ku ji alî Fermandarê Alayên Hemîdî Mistefa Paşa ve sed sal berê hatiye çêkirin di nav kelê de cîh digre. Zinnarên rojhilatê kelê ku di nav ava Dîjlê de ne, cîhê civîn û geştên havînê ê mîrên Cizîrê bûne.

## Deriyê Serayê

Sûrên ku ji sedemên xwezayî û di encama şeran de xerabûne, b.z di salên 230'an de ji alî Împaratorê Sasanî Erdeşêrê Babekan ve hatiye tamîrkirin.

Deriyê serayê jî di vê çaxê de hatiye çêkirin. Li seriya derî kîtabeyekî û dû taswîrên şêran hatine neqişandin. Derî ji sê kevirên bazalt hatiye lêkirin. Her kevirek nezî dû metre û nîv dirêj e. Kevirê çepê di serê vê sedsalê de şikestiye. Li ser van kevirên biheybet kemberekî hatiye rîsandin û ew bi qaîdeyên şêran hatine neqişandin.

## Mizgefta Mezin

Berhemekî dîrokî ku vî bajarê kevnare dinexşîne Mizgefta Mezin e. Ev mizgeft di demên berî îslamê de dêr bûye. Avahî di sala 639'an de wek mizgeft hatiye bikaranîn. Di dema abbasiyan de jî hatiye tamîrkirin. Di sala 1160'an de ji alî Mîr Elî yê kurê Mîrê Cîzîrê Baz Şah ve ji serî heta binî hatiye restorekirin. Minareyekî çargoşe di sala 1156'an de li mizgeftê hatiye zêdekirin. Sitûnên ku kûbeyên mizgeftê li ser bilind bûne, ji kevirên qul hatine lêkirin.

Deriyê hesin ê mezin di sala 1983'an de ji cîh hat derxistin. Rêvebirên dewletê ev de-











riyê ku bi motîvên ziv, şeklên sifir û nivîsên kûfî hatiye neqişandin birine Îstenbolê. Ev neqş di nav mînakên xwe de cîhekî mustesna digrin û ji alî alim Îsmaîl Ebul Îz ve hatine çêkirin. Deriyê Mizgefta Cizîrê niha di muzexana Topkapiyê de ye.

**Dibistana Ebul Îz**

Fizîkzanê mezin Ebul Îz El Cezarî di sala 1153'an de li bajarê Cizîrê hatiyê dinê û li wir jiyaye. Kaşifê dengdayî El Cezarî di dema xwe de qasî ku tê zanîn, 60 makîneyên cuda çêkirî ye. Di nav îcadên wî de cûrekî robotan û katjimêr jî hebûne. Ji ber zanebûn û hunerê xwe wek ,delaliya demê' yanê wek ,bedîuzeman' hatiye binavkirin. Nav û dengê zanebûn û îcadên wî ji alema îslamê heta alema Rojava belav bûye.

Di salên dawîn de ji bo parastina bermayiyên Ebul Îz li dibistana bi navê wî, muzexanyekî hatiye vekirin. Di vê muzexaneyê de nêzî 280 berhemê arkeolojîk û etnografîk hene. Hinek ji van bermayiyan ji dema Gûtî, Babîl, Asûr, Med, Selçûqî, Osmanî, Rûm, Ereb, Emewî û Abbasî mane.

**Tirba Ebul Îz**

Bedîuzaman Ebul Îz ku di sala 1233'an de çû ser heqiya xwe, di hewşa mizgefta Nûh de, li kêleka Hezretî Nûh hatiye veşartin. Li ser qebra wî qubeyekî hatiye lefandin û qebra wî ji wê rojê wir ve wek tirbeyekî pîroz tê naskirin.

**Mizgefta Nûh**

Ev mizgeft bi navê qahramanê tofana mezin Hezretî Nûh tê naskirin. Nûh piştî ku dimre, li hewşa vê avahiyê tê veşartin. Avahî li Taxa Torê, li seriya girekî ku Dîjle ji ber de derbas dibe, hatiye avakirin. Avahî di demên berê de jî wek hawra û dêr hatiye bikaranîn.

Qebra Nûh di qata binî a mizgeftê de cîh digre. Mîhraba ku ji serê ewîl de tê bikaranîn hîn jî li ser piya ye. Qatên jorê ê mizgeftê ji ber ku xerabûye û ji alî gel ve hatiye tamîrkirin, orîjînalîta xwe wenda kiriye.

**Tirba Hezretî Nûh**

Qebra Nûh jî di bodroma vê mizgeftê de ye. Li gor mîtolojiya pîroz Hezretî Nûh piştî ku mir, li Cizîrê li taxa Torê hat veşartin. Qebra Nûh, di demên peydabûna olên semawî de, pêşiyê wek hawra Cihûyan, paşê jî wek dêra Îsewiyan hatiye bikaranîn. Di sala 639'an de jî evder wek mizgeft hatiye guhertin. Ev avahî li ser rûyê cîhanê yek ji tirbeya herî kevn e.

Dîroknûs û gerokên wek Bersîsê Babîlî, Îbn-ul Esirê Cizîrî, Fîrûzabadî, Ewliya Çelebî û Ebûbekir Helewî di berhem û bîranînên xwe de vê tirbeyê wek Tirba Hezretî Nûh binav kirine. Di orjînala vê avahiyê de di nav derî û qebra Nûh de pêlikekî û limêjgehekî dirêj hebûye. Piştî restorasyona avahiyê, mîmariya avahiyê jî hatiye guhertin.

**Tirba Melayê Cizirî**

Navdar û rûmetekî Cizîrê Mele Ahmed e, ku bi navê Melayê Cizîrî tê naskirin. Mela di nav salên 1570 û 1640'an de jiyaye. Ji bilî alimiya xwe, wek şaîr û fîlozofekî mezin jî tê naskirin. Dîwana Melayê Cizîrî di nav qlasîkên Wêje ya kurdî de cîhekî taybetî digre. Di beyt û xazelên Mele Ahmed de, tasawûf, felsefe, ewîn û zanyarî bihevre cîh digrin. Berhemên Cizîrî di parastina Zimanê Kurdî de jî wek çeperekî girîng tê qebûl kirin.

Tirba Mele Ahmed di hewşa Medresa Sor de ye. Medrese li nav bajêrê Cizîrê ji tûleyên sor hatiye lêkirin. Kevirên qebran ji bazaltên reşin. Di tirbê de 7 kes radizên. Qebra alî başûr a Mele ye. Kevirên ber serê qebran hatine dizîkirin. Li ser qebran tu kîtabe jî tune ne.

Ji bilî Melayê Cizîrî, şair û mutasawif Feqiyê Teyran, zimanzan û alim Îbnul-Esir Mecdûdîn, zanist û edîb Îbnul-Esir Ziyaedin, Fakih Ebu Tahir, dîrokzan Îbnul-Esir Îzedîn tevî gelek zanist û rewşenbîrên din jî ji Cizîrê ne.

**Medresa Evdaliye**

Ev medrese di sala 1437an de ji alî begê Cizîrê Mîr Evdal ve hatiye çêkirin. Mîr Evdal torinê hukumdarê kurd, Seyfedînê Botî ye. Medrese di nav taxa Torê û qebristana bajêr de, li seriya sûra Cizîrê cîh digre.

**Tirba Mem û Zîn**

Yek ji rûmet û serbilindiya Cizîrê ew e ku ji evîna Mem û Zînê re bûye mekan. Bûyer û evîna Mem û Zînê di salên 1450 û 1451'an de li Cizîrê li derûdora qesra mîrê bajêr Zeynedîn de derbas dibe. Serpêhatiya Mem û Zîn di wêje ya nivîskî û devkî a kurdî de berhemeke sereke ye. Ev çîrok li Kurdistanê wek remza evîna welat û eşqên bê wûslat in jî.

Di encama bûyerên xirab de ku Mem û Zîn bê ku bigîjin hevûdû dimrin, di hewşa Medresa Mîr Evdal de tên veşartin. Tirba herdû evîndaran li başûrê medresê di qata binî de ye. Di tirba Mem û Zîn de qebra sêyem jî a Beko Evan e ku ew sebebê herdû bengîna ye.



Sûr, Silopî û Cizîrê:

# Şer hemû jiyanê kavil dike

Li navçeyên Sûr, Silopî û Cizîrê qedexeyên derketina derve mehek zêdetir e didome. Li van navçeyan û taybet taxên ku qedexekirîne ji ber tunebûna av, elektrîkê û bêderfetiyên mercan jiyana hemwelatiyan di xeterê de ye. Zarokên ku nikarin biçin dibistanan di bin dengên guleyan de dijîn û birîndar û nexweş nikarin biçin nexweşxaneyan. Serokên Odeyên Tabîban balê kêşandin ser tendurustiya hemwelatiyên van deveran û diyar kirin ku ger qedexe û şer û pevçûn wiha didomin, wê di demên pêş de gelek nexweşîn derkevin holê.

**Rihan Roj**

Piştî 7 Hezîranê li Bakur bi qedexekirina derketinên kolanan şer û pevçûnen ku dest pêkirin bi dijwarî didomin. Li navçeya Sûrê ya Amedê 3, li navçeyên Silopî ya Şernexê 19 û Cizîrê jî 28 kesên ku hatine kuştin û hê jî meytên wan nehatine binaxkirin. Her wiha 10 jê zarok, meytên 40 kesan jî li morgên nexweşxaneyên Şirnex, Cizîr û Silopiyê hatine rawestandin. Malbatên İsa Oran, Ramazan Ogut û Mesut Sevikteké ku di 23'ê Kanûna 2015'an de li navçeya Sûrê hatin kuştin jî ji bo meytên xwe bigrin di 2'yê mehê de li Şaxa Amedê ya Komeleya Mafê Mirovan dest bi greva birçîbûnê kirin.

Serokê Odeya Tabiban a Amedê Cengiz Günay di derbarê dorpeçkirina navçeya Sûrê de agahî da BasNuçeyê û got ku ew bi giştî nizanin çi bûyer diqewimin, lê belê li gor weşanên çapameniyê xuyaye ku gelek çek û cebilxaneyên giran têne bikaranîn. Günay diyar kir ku di dorpeçkirinan de kesên sivil nikarin pêdiviyên xwe yên rojane yên weke xwarin, vexwarin, tenduristî û perwerdehî dabîn bikin. Günay destnîşan kir ku ji mehekê zêdetir e ku navçeya Sûrê di bin dorpeça hêzên dewletê de ye, li vê derê pevçûnên pir dijwar diqewimin û got: " Di 23'yê Mijdarê de 3 ciwan li navçeyê hatibûn kuştin. Lê malbatên wan nikaribûn meytên zarokên xwe werbigirin. Ev malbat bo wergirtina meytan di 2'yê vê mehê de dest bi greva birçîbûnê kirin û niha greva wan didome. Ji ber qedexeyan heta niha 54 zarok tê de 327 sivil hatine kuştin. Her wiha 3 jinên siyasetmedar û ciwanek jî li Silopiyê hate kuştin."

Günay diyar kir ji ber qedexeyan gelê Sûrê nikare pêdiviyên xwe yên bingehîn bi cîh bîne û nikarin xizmetên tenduristî û perwerdehiyê jî bigrin û wiha dom kir: "Tê gotin ku walitiya Amedê nan û zexire belav dike. Lê belê ev têr nake. Li deverên ku şer û pevçûn hene kanalîzasyon diteqin, av û ceryan jî têne qutkirin. Me weke xebatkarên tenduristiyê serî li walitiyê da û me xwest em biçin cihên dorpeçkirî da ku nexweş û birîndaran derman bikin, lê belê walîtiyê destûr neda me."

**"Nexweşîn zêde bûne, derman tune"**

Cengiz Günay amaje kir ku xebatkarên tenduristiyê 20 rojin ku bo qedexe bêne rakirin li ber Şaredariya Parêzgeha Amedê kon vedane û nobeta aşitiyê dane destpêkirin û got: "Ev çalakiya me heta qedexeyên derketina derve hebin wê berdewam bike. Em dizanin ku jiyana mirovan tê astengkirin. Divê nexweşên şekir, yên tansiyonê û jinên dûcanî benê kontrolkirin. Gelek jin niha li malên xwe diwelidin. Ji ber vê yekê jî tûşî nexweşîna Endometritê dibin." Günay anî ziman ku her çend zivistanê nexweşîn zêde bibin û herî zêde jî zarok nexweş bikevin jî, malbat nikarin zarokên xwe bibin nexweşxaneyan. Günay diyar kir ji ber qedexeyan navendên tenduristiyê yên navçeyê girtî ne û yên vekirîne jî ji ber ku gel ditirse nikare biçe û got: "Ji ber qedexeyan, hejmara nexweşên ku diçin nexweşxaneyan ji sedî 50 kêm bûye. Mafê tenduristiyê bi giştî hatiye astengkirin. Ger wiha berdewam bike, wê nexweşînên cur bi cur derkevin holê û ev yek wê di demên pêş de li ser zarokan nexweşînên derûnî peyda bike. Her wiha zarokên ku di heman demê de nehatine derzîkirin jî wê tûşî nexweşiyên mezin bibin. Niha derûniya wan zarokan têk çûye"

**"Li herêmê derûniya şer serdest e"**

Serokê Odeya Tabîban a Mêrdînê Kamuran Yıldırım jî diyar kir ku li navçeyên Mêrdînê qedexeyên kolanan bi fermî hatine rakirin, lê belê hê jî ji ber ku bi aweyekî ne fermî ev qedexe didomin û jiyana mirovan ne parastî ye, ew nikarin di derbarê ziyanên pêk hatine de agahiyan berhev bikin. Yıldırım destnîşan kir ku ji ber dengên çekan û ji ber ku gel demeke dirêj di malên xwe de asê mane, mirov bi stres in û wiha dom kir: "Kesên ku li taxên qedexekirî dijîn nikarin xwarin û vexwarinê peyda bikin. Ji ber sermayê nexweşiyên wekî persivê û yên din ên zivistanê zêde dibin. Ji ber ku nexweşxane girtîbûn zarok di demên xwe de nehatin derzîkirin. Wê ev yek jî bibe sedema nexweşiyan. Jinên dûcanî di mercên na asayî de, li malên xwe pitikên xwe anîn dinyayê. Ji ber vê jî piraniya van jinan enfeksiyon girtin û pitikên wan jî bi zerikê ketine. Ev yek jî wê hejmara zarokên astengdar zêdetir bike." Yıldırım destnîşan kir ku ji bilî Cizîr, Silopî û Sûrê li Nisêbînê jî kesên birîndar hene û ji tirsan nikarin biçin nexweşxaneyan. Lewre ew kes ditirsin ku di derbarê wan de lêpirsîn bêne destpêkirin û bêne binçavkirin. Yıldırım got ji ber ku hêzên ewlehiyê û rayedar destûr nadin, ew jî nikarin biçin cihên ku hatine dorpeçkirin da ku wan kesan derman bikin û wiha pêde çû: "Niha jiyana wan di xeteriyê de ye. Gelê Nisêbînê ditirse ku careke din qedexeya derketina derve bê pêkanîn. Li herêmê derûniya şer serdest e. Saziyên sivil nikarin dengê xwe bilin bikin. Em carinan dixwazin çalakî û daxuyaniyên çapemeniyê li dar bixin, lê gelek kes ji tirsan newêre ku beşdarî van çalakiyan bibe. Çalakiyên demokratîk jî ji aliyê polîsan ve têne astengkirin." Yıldırım xwest ku hemû kes baş bifikire û got ku sûda vî şerî ne ji gelê kurd û ne jî ji gelê tirk re heye û wiha dom kir: "Em bang li rayedarên hikûmeta Tirkiyeyê dikin. Bila dawî li şer û pevçûnan bîne. Laşên heyvanên ku hatine kuştin ji kolanan nayên rakirin. Sergo nayên berhevkirin. Ev jî dibe sedem ku nexweşî peyda bibin. Em dixwazin di demeke zû de ev kuştin, mirin, qedexe û şer û pevçûn bi dawî bibin."



**"Her roj sivîl têne kuştin"**

Hevşaredarê Cizîrê Kadir Kunur jî anî ziman ku rewşa niha ya Cizîrê li ber çavên hemû dinyayê ye, lê li ser navê mîrovahiyê tu tiştek nemaye. Kunur got: "Rewşa ku niha Cizîr tê de ye rûreşiya mîrovahiyê ye em nikarin tu tişteki din bêjin. Divê mirovahi şerma xwe bi her awayî bibîne. Hêzên ewlehiyê kesên sivîl ji xwe re dikin armanc. Her roj hemwelatî têne kuştin û navçê bi topan tê rûxandin. Ji tirsa mirînê bi dehan kes di malekê de dimînin. Cihên ku tenê 30 kes dikarin tê de bimînin, niha ji bo 300 kesan bûye stargeh. Di odeyek de 30 kes dimînin. Eger gûleyek an jî roketek li van cihan bikeve, wê demê dibe ku hemû ew kes jiyana xwe ji dest bidin. Ev rîskeke mezin e. Lê gelê me piştgiriya hev dikin û her tiştên xwe bi hev re parve dikin. Li navçeya me, xebatên tenduristiyê jî têk çûne. Ji ber vê yekê gelek kesan jiyana xwe ji dest dane. îro jî keseke birîndar, ji ber ku ambulans nikaribû bê wê bigihîne nexweşxaneyê 3 seetan li erdê ma û jiyana xwe ji dest da. Li navçeyê ne elektrîk ne jî av heye û jiyan bi tevahî têk çûye."


Kadir Kunur


Cengiz Günay


Kamuran Yıldırım



Qedexeyên derketina kolanan

# Kurd li her derên cîhanê li kolanan e

Reyhan Akgün

Piştî qedexeyên derketina derve û aloziya şer û pevçûnên li navçeyên Bakur gihîşte asteke xeternak li hemû perçeyên Kurdistan, hin metropolên Tirkiyeyê û gelek welatên Ewropayê çalakiyên ji bo raw estandina şer zêdebûn. Gelek partî, sendîka, rêxistin û beşên civakê bi çalakiyên cuda yên wek nobet, meş û daxuyaniyan dest bi çalakiyan kirin. Sekreterê Rêxistinkirinê yê Şaxa Amedê ya Sendîkaya Kedkarên Tendurustiyê (SES) Yekta Yıldız di derbarê çalakiya nobeta spî ya ku ji aliyê endamên SES'ê, Odeya Tabîban ya Amedê û xebatkar û bijîşkên nexweşxaneyên taybet ve hatiye destpêkirin de da zanîn ku wan bi armanca rakirina qedexeyên derketina derve û rawestandina pevçûnên Bakurê Kurdîstanê vê çalakiya nobetê dane destpêkirin. Yildiz got ku wan li parka Şemse Allak kon vedane, lê belê ji ber ku polêsan astengî ji wan re derxistine ew li ber Şaredariya Parêzgeha Amedê çalakiya xwe didomînin. Yildiz da zanîn ku armanca wan a sereke gihandina pêdiviyên tendurustiyê yên navçeya Sûrê ye û got: "Li Navçeya Surê zarok, jinên dûcanî û mirovên sivil tênê qetilkirin û şêniyên taxên qedexe lê didomin pirsgirêkên dêrûnî dijîn. Xebata me ji bo van kesan e. Me xwest ku bi desteyekê derbasî Sûrê bibin, lê belê hêzên ewlehiyê û walîtiyê nehêştin ku em biçin Surê û me jî biryar da heta ku gelê me xizmeta tendurıstiyê bistîne em ê li kolanan bin. Armana me ew e ku ev dorpêça li ser navçeyan rabe, şer raweste û pêdiviyên tendurustî yên şêniyên Sûrê bêne bi cih anîn."

Yıldız diyar kir ku ji ber dorpeçê şêniyên wan taxan bi pirsgirêkên xwarin, vexwarin û pêdiviyên tendurustiyê re rû bi rû mane. Yekta Yıldız da zanîn ku jinên dûcanî yên ku divê bêne kontrolkirin û zarokên ku pêdiviya wan bi derzîkirinê heye, ji bê çarî bi azarên mezin re rû bi rû ne û tenduristiya wan di xetereyê de ye. Yıldız ani ziman ku li wan navçeyan mercên jiyanê nemane û got: "Bêdengî nîşana bêwijdaniyê û bidawîbûna mirovahiyê ye. Dorpeçkirin tênê rakirin lê piştre bi tundî dîsa tênê destpêkirin. Bo dawîkirina van dorpêçan divê siyasetmedar bi rêyên muzakereyê helbiwestin û vê pirsgirêkê çareser bikin. Ji ber ku axaftinên Serokkomar hertim li ser şer e baweriya me ya aştiyê nemaye. Divê hemû kes li dij vê yekê denge xwe bilind bikin."

Qedexeyên derve û şer û pevçunên ku li Bakurê Kurdîstanê diqewimin li welatên Ewropa, bajarên Rojava û Rojhilat bi meş û mîtîngan hate şermezarkirin û hate xwestin ku qedexeyên derketina derve bêne rakirin û şer bê rawestandin. Li gelek bajarên Tirkiyeyê û li Bakurê Kurdîstanê jî ji bo rakirina qedexeyan meş hatin lidarxistin, daxuyanî hatin dayîn û bang hatin kirin. Wê çalakiya nobetê ya kedkarên tenduristiyê yên Amedê heta rakirina qedexeyan bidomînin.








### "Kuştina kedkarên tenduristiyê ne tesaduf e"

Yıldız diyar kur ku ew wek rêxistinên tenduristiyê yên li Amedê û xebatkarên ku bi tu deran ve ne girêdayî ne, wek platforma hemû dezgehên tendurustiyê li vê derê ne. Yıldız, Wezîrê Tendurıstiyê wek wezîrê şer bi wesf kir û dom kir: "Li Cizîrê dema mamoste ji navçeyê derxistin ji xebatkarên tenduristiyê re gotin hûnê 9 rojan li nexweşxaneyên ku gule lê dikevin bimînin û ji bo parastinê jî gotin wê camên ku gule derbas nakin li dîwaran raxin. Tedbîrên parastina kedkarên tendurustiyê jî ev in." Yıldız diyar kir ku 3 hevalên wan ên endamên SES'ê hatine kuştin û herî dawî jî xebatkarê tenduristiyê Aziz Yural di kêliya ku mudaxaleyî nexweşek dikir li kuçeyekê hate kuştin. Yıldız axaftina xwe wiha domand: "Tê xuyakirin ku xebatên me ji aliyê Wezîrê Tenduristiyê ve nayê pejirandin. Wan hêvî dikir ku em di nav şer de bêdeng bimînin. Kuştina hevalên me ne tesaduf e."

### Sûda şer li tu kesî tune ye

Yıldız destnişankir ku nexweşxane hatine dorpeçkirin xizmetên tenduristiyê di qatên binî da di bodruman de tên kirin. Li kuderê dinyê binêrin di hemu şerande karê xwe dikin yê beşa 112'a lezgin neçarin ku diçin cihên buyeran. Yıldız da zanin ku kes li malê xwe runanê û mirinan temaşe nake ger ku ew dernekevin kolanan mirên ên zêdetir bibin. Yıldız got: "Mirina xebatkarê tenduristiyê gelekî bi êş e û em ji bo avakirina jiyanê xwe têdigihîjin. Polês, leşker jî mexdûrê vî şerî ne û em dizanin ku yên biryarê didin kîne. Ew li Qesra rûdinin em jî nikarin tiştekî bêjin. Ji bo me jiyan jiyan e û mafê jiyana herkesî heye. Armanca me jiyandin e."

Yıldız amaje kir ku herkes ji şer ditirse lê alikariya yekem rizgarkirina jiyanê ye û çi ji destê wan tê ew bi cih tînin. Deverên ku şer heye tenduristi gelek xirab û ew nikarin ji bo tenduristiye tişteki bikin û lê ji bo sekinandina şer ked e ke mezin didin. Yıldız got wana ji salê 90'î heta niha mirin dîtine, derûniya şer dizanin lê niha şunde divê ji bo zaroka çi hewçe bike bê kirin û got: "Di nava gelê Tirkiyeyê ji bo parqa Gezî'yê tevgerek ava bû lê li herêma me mirov tênê kuştin. Mirov ji bo ji zarokên xwe re şîr bibînin di bin guleyan de derbas dibin. Divê mirov bang li wijdanê rojavayê Tirkiyeyê bike." Yıldız da zanîn ku şer hertim berdewam nake di şer da tu kes qezenç nake. Ji bo ku ev şer û pevçun bi dawî bibe çi ji destê wan bê ewê pêkbînin.

### Qedexe li gellek derun tên protestokirin

Li Tirkiyeyê jî ji şandeyek ku ji rewşenbîran pêk hatibû, hatin Amedê û li vir banga aştî û muzakereyê kirin. Serok û endamên sendîka û saziyên sivîl yên wek; KESK, DİSK, ÇHD, THİV, İHD, TTB û TMMOB'ê di 7'ê Hezîranê de hatin Amedê û serdana Şaredariyê, KCD'ê û Walitiya Amedê kirin û paşê jî ji bo rawestandina şer û peçûnan daxuyaniyeke hevbeş dane çapameniyê û xwestin ku pirsgirêka kurd bi aweyekî aştiyane bê çareserkirin. Li Başûrê Kurdistanê jî li Silêmanî û çend deverên din çalakiyên protestoyî hatin lidarxistin. Her wiha li Tehran û bajarê Rojhilat Îlamê jî qedexe hatin protestokirin û di van çalakiyan de 4 kes hatin binçavkirin.

Li Rojava jî li hemû bajaran çalakiyên protestoyî û nobetên aştiyê hatin destpêkirin. Nuçegihana Rojavayî Sitêr Gulo di derbarê çalakiyên ku li Rojava ji bo qedexeyên li Bakurê Kurdîstanê hatine lidarxistin de agahiyan da û wiha got: "Di 7'ê mehê de li Girgê Legê meşeke mezin hate li darxistin, li ser seranserê sinorê rojava, li Dêrikê, Tirbesipiyê kon hatine vedan û her roj saziyek bi endamên xwe re li vir nobetê digirin. Li Efrînê jî li ser sînor zêdetir jin nobetê digrin. Yên Cizîrê jî car caran rêvebiriya xweser diçe serdana wan. Nobeta ku li van konan tê girtin heta buyerên Bakurê Kurdîstanê bi dawî bibe wê bidomin."

Qedexe ta li navçeyên Bakurê Kurdîstanê, li gelek welatên din ji bi çalekiyên cihê hatin şermezarkirin. Li paytexta Almanya Berlînê û li bajarên wek Hamburg, Köln, Dresden, Bonn, Frankfurt, Hildeesheim, Darmstadt, Dortmund, Giessen, Essen, Bremen, Stuttgart û Reutlingena jî bi meş û mîtîngan hatin şermezarkirin û kesên ku tevlî meş û mîtîngan bûn xwestin ku dorpeç bêne rakirin. Her wiha li paytextên welatên Ewropa yên wek London, Brüksel, Viyana, û li bajarên Basel, Cenevre, Zürih ên Swîsreyê û li bajarê Marsilya yê Fransayê jî çalekî û meş hatin lidarxistin.




"Piştî ku şer û pevçûnên li navçeyên Bakur gihîştin asteke xeternak partî û tevgerên Bakurî ketin nav hewldanan. Bi vê mebestê PAK, ÖSP, PDK-Bakur, Partiya Kurdistanî, Tevgera Azadî û PSK'ê biryar wergirtin ku ji bo rawestandina şer û pevçûnên navbera Dewleta Tirk û PKK'ê serdana Qendîl û Hewlêrê bikin. Ev partî û tevgerên ku bi vê armancê li hev civîyan di derbarê angaştên ku wê di bin banekê de bibin yek red kirin û ragihandin ku xebateke wan a bi vî rengî tune ye."

Partiyên Bakurî

# Ji bo aştiyê serdana Hewlêr û Qendîlê

Tekoşîn Çelîk

6 Partî û tevgerên Bakurî yên derveyî HDP û BDP'ê yên wek Partiya Azadiya Kurdistanê(PAK), Partiya Sosyalizm û Azadiyê(ÖSP) Partiya Demokrat a Kurdistanê-Bakur(PDK-Bakur) Partiya Kurdistanî(PAKURD), Tevgera Azadî û Partiya Sosyalîst a Kurdistanê(PSK) ji rawestandina şer û pevçûnên li navçeyên Bakurê Kurdistanê, li Amedê li hev civiyan û biryar wergirtin ku serdana Hewlêr û Qendîlê bikin. Di derbarê babetê de Alîkarê Serokê Giştî yê PAK'ê Nurullah Timur ji BasNûçe'yê re ragihand ku ev 6 partî û tevger ji bo rawestandina şer û pevçûnên navbera PKK û dewleta Tirkiyeyê de bi hevkarî biryarên stratejîk bidin û bi hev re hevkariyê bikin li hev civiyane. Timur got: "Em nizanin wê ev hevkarî me arasteyî çi bike, lê belê me niha tenê biryara bi hev re xebatê daye. Yek ji biryarên vê civînê jî pêkanîna daxuyaniya çapemeniyê ya li Qada Şex Seîd bû. Ev biryar jî ji bo geşedanên li Amedê û herêmê pêk hatine hatiye stendin. Her wiha yek ji biryarên civîna me jî pêkanîna konferansekê ye. Em ê hemû sazî, tevger, partiyên siyasî, nivîskar û rewşenbîran vexwînin vê konferansê. Ew ê konferansa me di 6 û 7'ê Sibatê de pêk bê. Di konferansê de wê babetên wek; Pirsgirêka Kurd û Kurdistanê, şer û ziyana wê û nerînên di derbarê çareseriyê de bêne nîqaşkirin" Timur da zanîn ku ne tenê ev 6 partî û tevgerên li hev civiyane, wê hemû kesayet û aliyên siyasî jî beşdarî nîqaşên vê konferansê bibin.

**"Ji bo yekîtiyê her tişt dikare biguhere"**

Di derbarê di bin banekî de yekbûna 6 parti û tevgeran de jî Timur anî ziman ku niha tu hewldaneke wan a bi vî rengî tune ye û dom kir: "Em dixwazin ku karekî wiha pêk bê lê ev angaşteke ji çewtiyên çapemeniyê ne. Wek PAK, em vê yekê dixwazin û me gelek caran jî vê daxwaza xwe ragihandiye. Serokê me, bernameya partiya me û navê partiya me ne tiştên pîroz in. Her tişt dikare bê guhertin. Ji geşedanên li ser Kurdistanê em dikarin hemû wan tiştan niqaş bikin. Ji bo yekîtiyê tu astengiyên me yên berbiçav tune ne."

**"Em dixwazin li dij Enqerê mil bi mil bisekinin"**

Sekreterê Giştî yê Tevgera Azadî Sidkî Zîlan jî di derbarê mijarê de daxuyand ku di hin dezgehên çapemeniyê de, di derbarê yekpartîbûnê ku li ser gotinên Osman Öcalan derketine hin nûçe hatine belavkirin ku ew ê partiyêkê avabikin û wê gellek kes beşdarî vê partiyê bibin û da zanîn ku ev agahî ne rast in. Zîlan got: "Jixwe nêzîkî 6 mehan e ku em her şeş partî û tevgerên Bakurê Kurdistanê bi hev re dixebitin û hevkariyeke hevbeş a stratejîk pek tînin. Kî dixwaze bila ji xwe re partiyekê ava bike. Em rêz digrin lê ev tiştên ku ji bo me têne gotin hemû angaş tin û çewtiyên çapemeniyê ne."

Sidkî Zîlan anî ziman ku ew hêvî dikin ev hevkariya wan bibe egera tevgereke neteweyî û dom kir: "Pediviya me bi eniyeke neteweyî hebe bibe ev yek bibe sedem. Konferans dibe, eniyeke neteweyî dibe an jî partiyeke nû dibe. Her çi be bila bibe egera vê yekê. Em ji hemû tevgerên Kurdistanî re rêz digrin. Di nav van tevgeran de PKK, PDK, partiyên Rojava û yên Bakur jî hene. Em ji hemûyan re rêz digrin û em wan wek hevalbendên xwe dibînin. Em bi çavekî dewleta xwe li Herêma Kurdistanê dinihêrin. Em ne li dijî tu kes û rêxistinên Kurdistanê ne. Em dixwazin li dij Enqerê mil bi mil bisekinin. Lê belê her parti jî xwedî bernameyek û nerîneke cuda ye. Em hereketeke Îslamî ne, ÖSP sosyalîst e, PAKURD neteweperwer e. Lê belê em hemû di çarçoveyeke demokratîk de bi hev re ne."

**"Em ê li Qendîl û Hewlêrê hevdîtinan pêk bînin"**

Cîgirê Serokê Giştî yê ÖSP'ê Nusredîn Maçîn jî di derbarê konferansê de diyar kir ku ew wek partiyên Kurdistanî li dijî konsepta şer a AKP'ê ne ku li Bakurê Kurdistanê lidar xistiye û ji bo rawestandina şer ew ê bi hev re helwestin. Maçîn got: "Beriya niha em çûne Cizîr, Licê, Silopî û Farqînê û me bi gel re hevdîtin pêk anîn û hin lêkolîn kirin. Ev şer sûdê nade gelê kurd û xizanî û têkçûneke çandî û civakî pêk tîne. Em dixwazin çareseriyek sivîl û bê çek pêk bînin. Armanca konferansa ku em ê lidabixin jî ew e. Ew ê nêzîka 200 – 220 kes beşdarî konferansê bibin û em ê banga çareseriyek sivîl bikin"

Nusredîn Maçîn amaje pê kir ku ev şer ji aliyê dewletê hatiye destpêkirin û ew wek hêzên siyasî yên li Bakurê Kurdistanê dixwazin vî şerî bi awayekî sivîl, fermî û demokratîk li dijî şer û pevçûnan de helwestekê pêk bînin. Maçîn got: "Armanca me li dij van êrîşên qirêj yên dewletê ku li ser gelê kurd pêk tîne bibin xwedî helwest. Ji bo vê yekê jî em ê bi Qendîl û Hikûmeta Herêma Kurdistanê re hevdîtinan pêk bînin. Herêma Kurdistanê, xwedî hevalbendên grîng e û ji bo çareseriyê dikare dîplomasiyê bikar bîne û Qendîl jî dikare şer rawestîne."

Serokê Giştî yê PAKURD'ê Îbrahim Xelîl Baran jî li ser yekpartîbûnê rawestiya û da zanîn ku ji bo vê yekê gelek pêşniyaz hatine kirin, lê di vê bereyê de tiştekî encamdayî tune ye. Baran wiha berdewam kir: "A grîng ne yekbûna dezgehî û yeknêrînî, lê afirandina stratejiyeke hevbeş e. Stratejiyeke hevbeş wê sûdê li kurd û Kurdistanê bike"

**"Doza me yek e, nerînên me cuda ne"**

Di civînê de Nûnerê PSK'ê Ramazan Moray jî nerînên xwe anî ziman û ragihand ku gelê kurd di nav pêvajoyeke bi agirî de derbas dibe û di kurd di nav vî agirî de dişe. Moray anî ziman ku di vî şerê ku li Bakurê Kurdistanê didome de ji bo gelê kurd tu xaleke sûdwer tune ye, ev şer ji bo rêgeha kurd û Kurdistaniyê astengiyan derdixe holê û pêwîstî bi rawestandina vî şerî heye. Lê belê rawestandina yek alî na. Divê her dû alî jî di heman demê de rawestînin. Gelê me pergende bûye, zarok birçî û tazî li kolanan mane. Ji bo daxwazên PKK'ê ev şer hewce nake û ne pêwîste."

Nunerê PDK- Bakur Bora Balîn jî diyar kir ku yên şer dikin ne ji bo Kurdistanê şer dikin, ew ji bo demokratîk bûna Tirkiyeyê şer dikin û ciwanan, jin û zarokên wan ji bo demokratbûna Tirkiyeyê têne kuştin. Balîn axaftina xwe wiha dom kir: "Em şeş tevger û partiyên Kurdistanî xwedî dozekê ne lê nerînên me cuda ne an jî em xwedî şeş kargehin tiştên me cuda ne lê bazara me yek e."








**Rojava**

# Rojnamegerên mûxalîf di bin zextan de ne

**Kawîs Botî**

Asayîşa Rojavayê Kurdistanê ku girêdayî Partiya Yekitîya Demokratîk e (PYD) bi kiryar û helwesta xwe ya li hember dezgeh û rojnamegerên muxalîf di rojevê de ye. Piştî êrîşa ser meşa Ala Kurdistanê niha jî asayîşa PYD'ê bi êrîş û binçavkirina rojnamegeran di rojeva raya giştî ya kurdan de ye. Herî dawî rojnamegerê bi navê Cengîn Elîko rastî êrîşa asayîşa PYD'ê hat. Beriya niha jî gelek dezgehên çapemeniyê ji aliyê PYD'ê ve hatibûn astengkirin û qedexekirin. Hat zanîn Rojnamegerê kurd ê bi navê Cengîn Elîko ku di heman demê de endamê Partiya Yekîtiya Kurd li Suriyê ye, piştî ku hat revandin bi boriyên hêsinî rastî lê dane û bi seatan îşkenceyê hatiye. Di encama îşkenceyê de pêçiyeke Elîko jê bûye, lingê wî şikestiye û bi giranî brîndar bûye. Her wiha hat zanîn ku gruba çekdar a ku Elîko revandibû û îşkence kiribû girêdayî Asayîşa Dirbêsiyê bû û ew bi otomobîla asayîşê revandine. Li ser revandin û îşkencekirina Rojnameger Cengîn Elîko, Navende Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê (PYKS) ku bi Yekîtî tê naskirin, ragihand ku Elîko ku di heman demê de endamê partiya wan e, ji aliyê Asayîşa PYD'ê ve hatiye revandin û ev kiryareke terorîsti ye. Rojnamegerên Rêveberiya Herêma Kurdistanê, Bakur, û Rojavayê Kurdistanê ev kiryara li dijî Elîko bi tûndî şermezar kirin û ew dijî mafê ragihandinê hesibandin.

**Azad Hemed Emîn: Li Rojava, azadiya muxalîfan tune ye**

Serokê Sendîkaya Rojnamegerên Herêma Kurdistanê Azad Hemed Emîn ji BasNûçe'yê re got, rewşa çapemenî û rojnamegerên Rojava gelek bi pirsgirêk e. Hemed Emîn ragihand ku li Rojava ya ku di bin rêveberiya PYD'ê de ye, ne tenê siyasetmedarên muxalîf, rojnamegerên ku weke wan nafikirin jî di bin zextan de ne û azadiya muxalîfan tûne ye. Hemed Emîn dîyar kir ku kesên ku wek PYD'ê ne fikirin ji aliyê asayîşê ve tên astengkirin û ev zordestî ye: "Li Rojava tu sendîka an jî dezgeheke çavdêriyê ya navdewletî û navendên ku mafên mirovan biparêzin tune ne. Ev jî dibe sedem ku tundî û dîktatorî li ser çapemenî û siyasetmedarên muxalîf çêbibe. Tu hewleke jî bo çêkirina dezgehên bi vî awayî jî çênebûye."

Hemed Emîn destnîşan kir ku wan weke Sendîkaya Rojnamegerên Kurdistanê, beriya sê salan, dema ku hêvî hebû ku kongreya netewî kom bibe, program, proje û pêşniyarên xwe amade kiribûn ku tê de avakirina Federasyoneke Rojnamegeran hebû ku rojnemegerên her çar parçê Kurdistanê tê de cih bigirin. Li hêla din Hemed Emîn got ku ew çûne Rojava, Bakûr û Rojhilat re rûniştine û pêşniyarên xwe pêşkêşkirine. Hemed Emîn, wiha dewam kir: "Em çûne Qendîlê jî, Tirkiyeyê jî, Elmanyayê jî, em çûn her derê. Me hewl da ku federasyoneke netewî ya ku her çar parçê Kurdistanê di nav de bin, ava bikin."

**"Li Rojava azadiya çapemeniyê nîn e"**

Azad Hemed Emîn diyar kir ku beriya niha li Qamişlo konferansek kom bû û wan jî dixwest beşdar bibin û rexne, gazind û giliyên xwe bînin ziman, lê nehatin vexwandin. Her wiha Hemed Emîn ragihand ku wan rexneyên xwe arasteyî rayedarên PYD'ê kirine û dema dezgehên çapemeniyê li Rojava hatin girtin û qedexekirin ew bi awayekî tund rexne kirine. Hemed Emîn amaje pê kir ku ew beriya sendikaya Iraqê bûne endamê sendîkaya rojnamegeran a navdewletî û mixabin li Îran, Suriye û Tirkiyeyê tu sendîka ne endamên sendîkayên navdewletî ne: "Em gelek caran li ser van meseleyan bi PYD'ê re axivîn, lê PYD em gûhdar nekirin. Tenê hinek navend avakirine û ew jî girêdayî wan in. Çareserî ew e ku sendîkayeke netewî çêbibe. Li Rojavayê Kurdistanê fikrên muxalîf nayên qebûlkirin. Ev pirsgrirêkeke mezin e. Divê rojnamegeriyeke xurt û çapemeniyeke azad li her çar parçê Kurdistanê hebe."

> Rojnamegerê kurd ê bi navê Cengîn Elîko ku di heman demê de endamê Partiya Yekîtiya Kurd li Suriyê ye, piştî ku hat revandin bi boriyên hêsinî rastî lê dane û bi seatan îşkenceyê hatiye. Di encama îşkenceyê de pêçiyeke Elîko jê bûye, lingê wî şikestiye û bi giranî brîndar bûye.



Hemed Emîn anî ziman ku ev bûyera dawiyê jî tê wê wateyê ku azadiya mûxalîf û siyasetmedaran li Rojava tune ye. Hemedemîn wiha dawî li axaftina xwe anî: "Rewşa Rojavayê Kurdistanê ne baş e. Li Rojava demokrasî tûne ye. Me gelek caran ji rêveberiya Rojava re got ku rêzê ji azadiya rojnameger û çapeneiyê re bigirin. Heta niha rêveberiya rojava hewlek ne daye ji bo azadiya rojnameger û çapemeniyê. Ev bêhiquqiye. Em bi her awayî van kiryaran protesto dikin."

**Adil Harmancı: PYD dixwaze tenê propaganda wê bê kirin**

Rojnameger Adil Harmanci jî li ser helwesta li hember rojnemgerên mûxalîf û bûyera dawiyê, ji BasNûçe'yê re destnîşan kir ku, PYD'ê kesên ku weke mûxalîf dibîne asteng dike û gelek caran peyamnêrên Rûdawê û hin rojnamegerên din hatin bincavkirin, girtin, lê xistin û bi vî awayî li hember rojnamegerên ku weke wan nafikirin din ava helwesteke ne baş de ne. Harmancı ragihand ku PYD mafê jiyanê ji rojnameger û dezgehên muxalîf re nahêle û ew nikarin vê bi çepgiriyê, demokrasiyê an jî bi rewşa şer rave bikin. Harmancı bal kışand ser meseleyê ü wiha got: "Li Tirkiyeyê jî bi taybetî salên 90'î li ser rojnamegên kurd û nêzîkî PKK'ê gelek caran rewşên wiha rû dan û gelek rojname hatin girtin, sansurkirin û rojnameger hatin kûştin. Ev hemû çûn berdestê Dadgeha Mafê Mirovan a Navdewletî û saziyên mafê mirovan ên navdewletî ev kiryar hemû seza kirin. Lê rewşa ku demekê li Tirkiyeyê heyî niha li Rojavayê Kurdistanê rûdaye. Ev wek helwesta dewleta Tirkiyê ya li hember rojnamegeran e." Harmancı got ku ev kiryar berhemên mantiqeke tekparêz in: "Rojnameger ya dibîne dinivîse û têkilî karên PYD'ê yên pişt perdê jî nabin lê dîsa jî rastî zextan û astengan tên. Mixabin kesên ku demekê di bin zextên dewletê de bûn, niha wan kiryar û zextan bi xwe dikin."

**Mahmut Bozarslan: Ev nakokî ye**

Rojnameger Mahmut Bozarslan jî ji BasNûçe'yê re axivî û tekez kir ku ew yek keşeyeke mezin e, ne gaveke rast e û ev pêşiya pêşveçuna demokrasiyê û azadiya çapemeniyê digire. Bozarsalan diyar kir ku kurd bi xwe ji ber ku dengê wan tê astenkirin gazindan dikin û ew rabin çapemeniya xwe asteng bikin nabe û ev nakokî ye. Bozarslan axaftina xwe wiha domand: "Eger çapemeniya muxalîf nebe, çapemenî dibe yekreng û di rewşeke wiha de mirov û sazî wê xeletiyên xwe çawa bibînin? Heke em doza demokrasiyê, mafê mirovan û azadiya çapemeniyê bikin divê em ji nava mala xwe dest pê bikin."

Rojnamegerê ji Rojavayê Kurdistanê Zekeriya Mistefa jî tekezî li ser wê yekê kir ku PYD'e û asayîşa bi ser wê rê li ber azadiya çapemeniyê digrin û ew dixwazin hemû medya heyî ya Rojavayê Kurdistanê di bin kontrola wan de be. Mistefa da zanîn ku ew heta niha li gelek buyerên wisa rast hatine û ew wê êrîşa li ser Cengîn Elîko bi tûndî şer mezar dikin.

**Abdulrezzak İlge**

# Nîgarsazê Tevkujiya Şengalê

"Helbestekê Rênas Jiyan heye, di helbestê de dibêje li ser Çiyayê Şengalê komekê xenzîr Teyrê Tawûs ji xwe re biraşti ne. Min ji wê hinek best girt û bi wî awayê ez bi rê ketim. Komek xenzîr êriş dikin li ser Teyrê Tawûs, teyrê ku ketiye û hindik maye ku ji aliyên komên xenzîr ve bê perçekirin."



Abdulrezzak İlge

Çimen Gümüş

Nîgarsaz Abdulrezzak İlge, bi tabloyên xwe yên balkêş, wiha xuya dike ku wê di alema hunerê de cihekê girîng bigire. Hunermend İlge, di xebatên xwe de berê xwe dide tûndrewî û tevkujiyên ser kurdan. Tabloya wî ya li ser tevkujiya Şengalê demeke dirêj e di rojeva hunerhezan de ye. İlge ji BasNûçe'yê di derbarê nîgarsaziya kurdan de nerînên xwe anîn ziman.

**Li Kurdistanê dema ku bahsa hunerê tê kirin muzik, tê bîra mirov. Şano û sînema jî di salên dawîn de pêşketin. Hunera nîgarsazî hinekî biyanî disekine. Li Kurdistanê li hember nîgarsaziyê helwesteke çawa heye?**

Ez ne bawer im ev tenê meseleya gelê kurd e. Ev meseleya hemû gelên Rojhilata Navîn û alema îslamê ye ev meseleya hunerê şêwekarî meseleyekê bi arîşe ye. Ji ber ku olê qedexe kiriye. Tenê awayakê wî rawe dîtiye. Yên din qedexe kirine. Ji ber vê yekê ev huner pêşneketiye. Lewma di nav gel de, kevneşopiyekê hunerî mixabin tine ye. Ew jî hedî hedî çêdibe. Bi keda berxwedana hunermendan ewê pêş bikeve. Wekê din li Kurdistanê êdî zaningeh û çend beşên hunerê hene. Ew girîng e ku ji vê helê ve hin pêşketin çêbibin. Helwestekê me yî taybet nîne. Em nikarin wek gelê rojava eleqeyekê mezin bidin nîşan.

**Sînorên te çine, dema tu wêneyan çêdikî tu çi difikirî?**

Ji aliyê teknikî ve demekê dirêj piranî li ser teknîka rengên zeytî ez xebitîm. Hinek li ser videoyan jî xebitîm. Çend xebatên min yên wênekêşî jî çêbûn. Lê ew wek pêvajoyekê xurt bû ku ez tê de tiştê ku ez lê digeriyam min nedît an serneketim. Min bi dest nexist. Carek din vegeriyam wênesaziyê. Ev çend sale ez tenê li ser xêz kêşanê dixebitim. Min hinek dev ji reng jî berda û tenê, 'sî û ronî' amurên ku ez bikartînim ev in. Ev jî ne wek ku ez xwe sînor dikim. Ez tenê teknika xwe hildibijêrim. Û dixwazim derfetên ku ew teknîk dide te, di wir de tiştekî ku ez dikarim bikim û pêşvebibim, ez hê jî lêdigerim. Ez ne bawerim tu hunermend bikarîbe bibeje, min êdî dîtiye, ev hûnera min e, êdî di wir de divê ez bisekinim. Ew tiştekê ji xwe xetere û şaşe. Lewma lêgerîn her daîm didome.

**Tu dixwazî di hunera xwe de çi pêyamê bidî?**

Ez ne bawer im ku tiştekî wiha sereke hebe ku hunermendek bibêje meseleya min ev e. Divê ez vê yekê di hunera xwe de bînim ziman. Ew diguhere. Heyam heyam diguhere. Lê yên wê dawiyê ku em behsbikin li ser meseleya şîn girtinê ye. Şîna ku ji aliyê desthilatdaran ve, ji aliyê serdestan ve ku nayê naskirin. Şîna ku nayê naskirin, şîna ku qedexeye awayeki. Dixwazim hin hêmayên bi vî rengê bidest bixim an jî, bigihijîme hêmayekê wisa, lê ne hêmayekê ku pir eşkere be, ku raste rast bibêje, lê hinekê temaşevan li berê bifikire, hinekê xwe bixwe di wir de wê tiştê bibîne. Ez dikarim bibêjim naveroka wî hinekî veşartiye. An jî ji bo min girînge ku ew naverok hinekî weşartî bibe û ji bo temaşevanan em bêjin wek sergûzeştek çêbibe. Tê de hinekî here-were, lê bigere, tiştekê ji xwe re bixwe bibîne. Belkê tiştê ez dixwazim bibêjim pir cûdatir bibe. Pir dûrtir bibe jî.

**Wek hunermendekî kurd, di hunera te de pêyamên siyasî hene?**

Taybetî wêneyên min çend sal berî, an jî videoyên min jî piranî lir ser meseleya nasnameyê bûn. Di xebatên min de nasnameya kurdewarî tê de hene. Lê ew pêşengeha min a dawî, ku hê jî didome, ji meseleya nasnameyê wêdetir, tiştên bêtir bêjin gerdunî, tiştên mirovahî ku ji bo hemû mirovahiyê derbasdarin. Ew jî wek meseleya mirin û jiyanê ne. Meseleya xweşikahî û kirêtiyê ye. Meseleyên bêtir takekesî an jî dibe ku di wir de tiştekî politik û derbarê meseleya kurd û Kurdistanê de mirov dikare bibîne, lê bêtir li ser çîroka min a bixwe a takekesî re dixwazim hêmayan bibînim û wan saz bikim. Min di van xebatan de portreya xwe çêkiriye. Di van portreyan de ez bi destên xwe rûyên xwe digirim. Xebatekê bêguman polîtîk e û li ser meseleya sansûr û otosansûrê ye. Lê di vir de gelek rûyên ku min bikarîbina hilbijartina, ravekirina vê meseleyê, min xwest ez hêmayên xwe bixwe bikarbînim. Hêmaya xwe ya rast bigirim. Bikim ku temaşevan rûyên min nebibîne. Ew bibe hêmaya min bixwe.

**Di tabloya Şengalê de te xwest bahsa çi bikî? Pêyama te çiye?**

Navê wê xebatê Natûrmortekî Çiyayê Şengalê ye. Di vir de meseleya esasî komkujî ye. Min hêmaya Teyrê Tawûs bikaranî. Li ser meseleya Şengalê ku par qewîmî û komkujiya 73'yem bû bi serê wan de hat. Mijar ew e. Lê tenê serê xwe ne ew e. Komkujî bixwe ye. Em bêjin hemû komkujiyên ku dîroka mirovahîyê de pêk hatine derbarê wê de ye. Ev ne tenê li ser Şengalê, ne tenê kurdayetî û ne tenê oleke. Tenê Teyrê Tawûs rengîn e, yên din reş û sipî ne.

Helbestekê Rênas Jiyan heye, di helbestê de dibêje li ser Çiyayê Şengalê komekê xenzîr Teyrê Tawûs ji xwe re biraşti ne. Min ji wê hinek best girt û bi wî awayê ez bi rê ketim. Komek xenzîr êriş dikin li ser Teyrê Tawûs, teyrê ku ketiye û hindik maye ku bê perçekirin ji aliyên komên xenzîr ve. Eger taybeti em li meseleya komkujiya ezdiyan binêrin piraniya wan ji aliyê mislimanan ve hatiye kirin. Û di baweriya îslamê de jî mahlûkên herê arjengû, kirêj û nexweşik beraz e. Ji vê aliyê ve min hinekê xwest bi DAIŞ'ê re bikim yek. Ev şermezarkirina DAIŞ'ê ye, ne ya Îslamê ye. Tiştekê olî di vir de tine. Ne ezdayetî ne jî îslam hatiye şermezarkirin. Meseleya tinekirin, kuştin û komjiyê heye. Her wiha meseleya xweşikayî û qirêjiyê ye.

**Tekiliya huner û desthilatdariyê li Kurdistanê tu çawa dibînî. Taybetî jî saziyên kurd ên li herêmê, tekilîya wan bi hunerê re tu çawa dibînî?**

Huner û sazî, huner û desthilatdarî bihevre nameşin. Hunermend divê hemû awayên desthilatdariyê red bike. Hingê dibe hunermend. Lewme ku saziyan kurdan dixwazin, hewlbidin li ser hunerê jî tiştan bikin, helbet bi daxwazakê qenc destpêdikin, lê dawiya dawî ew jî hunermendan bi awayekî bersînor dikin. Keda wan û hewldanên wan pir hêja ne.

Ez ji aliyeke ve hêj di nav akademiyê de me. Desthilatdariya akademiyê bixwe jî heye. Akademi bixwe jî polîtîk e. Nakokî dibe ku bê xuyan. Akademi belkî di perwerdehiya peşîn de an jî perwerdahiya tiştên esas de xwendekaran bi awayekî bersînor dike. Lê ev yek jî her daîm tê nîqaşkirin. Ev mesele li welatên rojavayê ji zû ve hatiye çareserkirin. Desthilatdariyekê bi wî rengê êdî nema ye. Akademî pir azad in. Lê li vir ew pirsgirêk hêjî didome. Lê berxwedan jî ji bo vê yekê didome. Ku em werin li saziyên kurdan, di wir de tiştekê din heye. Bêtir dixwazin tu tiştên polîtîk û sloganîk û tiştên pir ku ne hûnerî ne, heviyekê wan wisa heye ku hunermendên li wê derê xebatên bi wî rengê bikin.

**Têkiliya civak û hunerê çawa dinirxînî? Gerek ev têkilî çawa be û niha çawa ye?**

Tiştekê klîşe heye, gelo huner ji bo civakê ye an huner ji bo hunerê ye. Ne meseleyekê bi wî awayê lê, kesayeta ku em jê re bibêjin hunermend, ne mimkûne ku xwe ji civakê vekişîne an xwe jê îzole bike. Ew tiştekî dijî diyalektîkê ye. An jî ji bo polîtîkayê. Bi awayekê çikas em bêjin biçûk be jî an jî berbiçav be jî, ew bandor an jî têkiliya di navbera hunermend û civakê re her wiha politika û di siyasetê ve xwe di nav wan berheman de dide der. Mesele ew e ku hunermend di derbirîna wê têkiliyê de tiştekê çikas afrînende pêk tîne yan na. Gereke hunermend li ser vê meseleyê hur bibe û bêtir li ser vî bixebite. Meseleyên estetikî bêtir li ser wan tîr bide.